

## Ewlekariya Kurdistanê aram e

Mesrûr Barzanî Rawêjkarê Encûmena Asayişa Kurdistanê di hevpêyvîneke digel rojnameya VG ya Norweçî de hêviya xwe anî ziman ku piştî gelê kurd di referandûmê de biryara serxwebûna xwe bide, civaka navdewletî jî wek welatekî serbixwe Kurdistanê nas bikin.

Barzanî, derbarê dewleta Kurdistanê ya defakto de jî wiha dibêje: "Kurdistan dûrgeheka aramî û seqamgîriyê ye li nav deryayeke ne aram de, me asayişa welatê xwe bi dest xistiye û di warê aborî de jî em ji Iraqê baştir in."

➜ 5

BasNûçe HERDEM RASTÎ

ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL

HEJMAR 12 • 12 - 18 TÎRMEH 2014 • WWW.BASNEWS.COM

## Tara Mamedova û dengê sirgûnê

Mamedova ku jiyana wê û malata wê bi temamî li ser riya sirgûniyê derbas bûye jiyan û muzîka xwe bi me re parvekir.

➜ 16



# Kobanê kurdan digîjîne hev





Dorpêçana DAIŞ'ê ya Kobanê ku beriya çend mehan destpêkir di rojên dawî de zivirî êrîşeke din ya berfireh. Piştî ku li herêmê êrîşên dijwar carek din destpêkirin, di navbera kurdan de jî nêzîkbûnek peyda bû. Xetera ketina Kobanê bi taybetî di navbera PDK û PYD'ê de hewayek nermtir afirand.

Tê ragihandin ku alîgirên partiyên kurd yên muxalîfên PYD jî tevlî refên YPG dibin û beşdarî berxwedana dijî DAIŞ'ê dibin. Di vê navberê de Mûrad Karayilan ji bo piştgiriyê hewariya Mesûd Barzanî kir. Nûnerê Barzanî bersiveke erênî da Karayilan.

➜ 4-5

## Dengir Mir Fırat: Kurd û tirk wê entegre bibin



Cîgirê Serokwezîr Tayyip Erdoğan yê kevn Dengir Mîr Mehmet Firat diyar kir ku pêşveçûnên di derbarê çareseriya pirsgirêka kurd de dibin cihê hêviyan, tirk û kurd xwedî hevkariyek dîrokî ne û di pêşerojê de entegrasyonek balkêş dê di navbera herdû gelan de pêk bê. ➜ 8-9



## Kewên Taksîmê

Apê Hesen niha li Tarlabaşi dikandariyê dike. Ew be kewan re hevaltiyê dike. Li ber dikanê di sindoqan de du cot kew hebûn lê beriya çend rojan yek ji wan çûye ser dilovaniya xwe! Li malê jî cotek kewên wî hene û yek ji wan niha qup ketiye û 5 çêlkew derxistine.

➜ 12

## Kêliyên dawîn yên Qasimlo

Roja 13'ê Hazîran a 1989'ê neyarê Komara Îslamî ya Îranê Ebdulrehman Qasimlo li avahiyeke Viyanayê, bi du guleyên ku li serê wî ketibûn û tevî du hevalên xwe hatibû qetilkirin. Qasimlo rêberê Parti ya Demokrat a Kurdistana Îranê (PDKÎ) bû. Deh salên dawîn şerê artêşa Îranê dest pê kiribû.

➜ 10-11



# Xemla Hewramanê Merîwan



WELAT BAZ

Merîwan ji bajarên Ostana Kurdistanê û nawendeke girîng ji herema Hawraman e. Bajêr qezaya bajarê Sîne ye û li bakûr rojavayê peytexta Kurdistanê dikeve. Firehiya xaka Merîwanê nezî 7500 kîlometreçargoşe ye. Merîwan di navbera 35 xulek bakûr û 46 xulek rojhilat de cîh digre. Rojhilatê Kurdistanê li gor pergala rêvebiriya Îranê li Ostanan hatiye belavkirin. Ostana Kurdistanê ku peytexta wê Sîne ye, ji bajarên Merîwan, Saqiz, Bane, Bîjar, Qûrwe, Berdereş, Dîwandere û Kamyaran pêk tê.
Kurdên din yê Rojhilatê Kurdistanê li eyaletên Kermanşa, Loristan, İlam, Hamedan û Azarbaycana Rojava dijîn. Li Mazenderan, Gîlan û Xûresanê jî hijmareke mezin kurd hene. Merîwan yek ji bajarên serekê yê herema Hawraman e. Hawraman li Rojhilatê Kurdistanê ji deverên diyar e. Beşek biçûk yê Hawramanê dikevê nav sînorê Başûrê Kurdistanê. Hawraman ji heremên Text, Jawerû, Gawerû û Lîhonê pêk tê. Hawraman di navbera ostanên Kurdistan, Kermanşa û Başûrê Kurdistanê de cîh digre.
Herema Hawraman bi erdnîgar, dîrok û civaka xwe baldar e. Çiyayên bilind, daristanên mezin, deryaçe û rûbarên mezin, tevî însanên dilsoz û jiyana wan ya otantîk, dîmenên Hawramanê dixemlînin. Şeniya bajêrê Merîwanê li gor hijmarên nû nêzî 150 hezarî ye. Niştecihên Merîwanê bi giştî kurd in. Kurdên Merîwanê hemû Musluman û ji mezheba Sunî ne. Merîwanî bi giştî bi zarava goranî, bi devoka hewramî diaxifin. Li bajêr hin malbatên soranîaxêv jî hene. Bajer li nêzî sînorê Başûrê Kurdistanê ye. Li hember Merîwanê bajarê Başûrê Kurdistanê Pencwîn cîh digre. Li bakûrê bajêr Saqiz, li başûr Sîne û Diwandere li Başûrê Rojava Sarvabad û li rojava jî ji Başûrê Kurdistanê bajarên Pencwîn û Xurmal cîranê Merîwanê ne.

## Gola Zirîwarê

Deryaça Zirîwarê xwediyê dîmenên bihûştî ye. Gola Zirîwarê li Rojavayê Merîwanê cîh digre û sê kîlometreya dûrî bajêr e. Zirîwar û Merîwan bi hev tên naskirin û gol remza vî bajêrî ye. Dirêjiya golê 5 kîlometre, firehî jî 2 kîlometre ye. Kûrahiya golê 50 metre ye. Di nav golê de giraveke biçûk jî heye. Ava deryaçeya Zirîwar şîrîn e. Li derdora gole hin avahiyên tûrîstîk û behndanê hene. Ji bo pêşxistina tûrîzmê hin projeyên din jî tên çêkirin. Li kêviyê golê ji bo listika zarok û xortan lûnaparkekî jî hatiye çêkirin. Çavkaniya golê, ava baranê, berfa helandî û kaniyên binerdê ne. Hîç rûbarek narjê nav golê. Herwiha Rûbarê Merîwanê parek mezin çavkaniya xwe ji Zirîwarê digire. Zirîwar ji deryayê 1200 metre bilind e. Gol di mehên biharê de bi ava baranê tijî dibe. Merîwan li İran û Kurdistanê cihê ku herî zedê lê baran dibare ye. Nîsbeta baranê salanê 800 mîlîmetre ye. Zivistanan herem di bin berfê de dimîne. Germahiya heremê di navbera 21 û 25 dereceyan de duguhure. Zivistanê ji sedemê sarmayê Zirîwar qeşa digire.
Ji ber ku ava deryaçeyê şîrîne, bi kêrî çandinî û xwedîkirina masiyan jî tê.
Li peravê deryaçê gelek balinde hene. Balindeyên wek qaz, ordek, mîrîşkên avî, pelîkan, anqût û filamîngo li koloniyên derdora golê dijîn. Di ava deryaçê de gelek giyanewerên avî û masiyên cûrbecûr jî hene. Di mehên havînê de Merîwanî û gelê derdorê herroj tên peravên Zirîwar e. Bi taybetî berê evaran bi hezaran kes li qeraxên Zirîwarê digîjîn hevûdû. Ji ber hatina tûrîstan jî, gol di aboriya bajêr de cîhekî girîng digre. Bi sedan firoşkar ji bo pêdivîyên tûrîstan bibersivînin li derdora gole bazirganiyê dikin. Herwiha otel û xwaringehên bajêr bi mêvanên golê dagirtî ne. Li ser Deryaça Zirîwarê werzîşên avî jî tên kirin. Li Merîwanê tîmên werzîşvanî yên seravê hatine damezrandin. Ji ber ev deryaça mezin ji alî çem û rûbaran ve nayê avdan peydabûna wê hertim bûye sedeme şîroveyên eceb. Ji ber vê yekê li ser peydabûna Gola Zirîwarê di nav gel de gelek cîwanok jî tên gotin.

## Çiya û daristan

Merîwan devereke çiyayî ye. Erdnîgara bajêr ji deryayê 1200 metre bilind e. Çiyayên Çilkanî bilindtirîn girên Merîwanê ne. Çiyayê Hezarmîrge sîlsîleyên Çilkanî ne. Çiyayê Şaho dikeve başûrê Merîwanê. Çiyayên Garan beşek girîng ji berzahiyên Merîwanê ne. Çiyayê Îmam li başûrê Merîwanê yê. Çiyayên Bîran, Mîr Hacî, Oraman û Sûrîn wek sînor dikevin navbera Merîwan û Başûrê Kurdistanê. Çiyayên heremê qasî 3 hezar metre bilindin. Gelek ji çiyayên Merîwanê bi daristanan xemilandîne.

Merîwan li Ostana Kurdistanê yek ji bajarên herî şîn e. Di demên kevn de li Meriwan û hemû Ostana Kurdistanê berahiyeke fireh ya daristanan hebûye. Di salên dawîn de ji ber şewitandina daran û guhnedana wan rêjeya daristanan heta 300 hezar hektarî ketiye. Daristanên Merîwanê ji darên; hirmiyên bejî, darên mazî, darên bî, behîv, fistiq, qaç, zalzalk, şîrhişk û tewrêzîl pêk tên.

## Bajarê Marveyanan

Wek gelek bajarên Kurdistanê navê Merîwanê jî bi qasî ku xwedî dîroke kevn e, ewqas xwedî çîrokeke balkêş û tevlîheve jî. Dîrokzanê Merîwanî Enwer Rewşen, navê bajarê xwe digîjîne dema Medan. Li aliyê din di nav gel de gelek çîrok li ser navê bajêr tê gotin. Li gor yek ji van çîrokan navê Merîwanê ji peyva Marveyan hatiye. Marveyanan sihetiya daristanên bajêr kirine û navê wan li heremê bûyê.
Li gor hin dîtinên din navê bajêr ji teyrên Marawî ku li nêzî Gola Zirîwar hebûne, hatiye. Li gor hin dîtinan jî navê bajêr ji marên avî yên vê golê hatiye. Dîsa li gor hin dîtinên din, bi navê Maravanyan komekî însan ji Bexdayê hatine, li vir bicîh bûne û navê wan li heremê hatiye danîn. Merîwan di demên kevn de wek Mehrewan hatiye binavkirin.

Heta salên dawîn jî Merîwan gundekî biçûk bû. Li ser rêya Sîne bi navê Garan dihat binavkirin. Di sala 1902'an de li kêleka Gola Zerîwar ji alî Nasretîn Şahê Qaçar ve qeleyekî hat avakirin. Piştî salekî ev qesr ji alî apê wî, Hecî Ferhad Mirza ve hat firehkirin. Navê Qesrê Şahabad bû. Li nêzî qesrê gundekî jî hatibû avakirin. Li gund mizgeft û hemam jî hatibûn çêkirin. Ji bo pêdiviya avê bi navên Ferhad 3 qanalên mezin hatibûn vekirin. Piştî ku xanedana Pehlewî di sala 1919'an de hat ser hukum, navê qesrê wek Dedşapûr hat guhertin. Ji ber delalî û xêrûbêra xaka Merîwanê herem her leqayê êriş û dagiran bûye. Ji ber vê yekê gelek car hatiye wêrankirin û jinûhve ava bûye. Wek mînak di dema Şah Şafî de li Merîwan û derdorê kevir li ser kevir nemaye. Herem paşê dîsa hatiye avakirin. Gelek malbat, îmarat û xanedan ji heremê derbasbûne û li pey xwe berheman û rêçan hiştine. Yek ji vana Qesra Xalo Xanê Ardalanî an jî bi navê din, Qeley Merîwan e. Ev qele li nêzî Gola Zirîwar bûye. İro ji qelê tenê rêçên hin dîwaran mane. Qele li quntarê Çiyayê İmam li ser girekî bilind hatiye avakirin. Ji qelê Deşta Merîwanê û Gola Zirîwarê jî tê dîtin. Herwiha li derdora vê qelê û Gola Zirîwarê qebrên desthilatdar û oldarên naskirî mane. Van qebran heta niha jî wek ziyaretgah tên naskirin û ji alî gel ve tên parastin.

## Mizgefta Sor

Mizgefta Sor, bi taybeti û mîmariya xwe berhemeke balkêş yê Merîwanê ye. Mizgeft bi xiştî sor di dema Sefewiyan de ji alî Mîr Hemza Baban ve hatiye avakirin. Bi taybetî xeml û neqşên minare û dîwarên mizgeftê baldarin. Mizgeft di nav bajêr de cîh digre. Nimêjên înê yê Merîwaniyan li vê mizgeftê tê kirin.Di vê mizgeftê de meleyên wek Ebubekîr Musanaf Çorî perwerde dîtine.




Gundekî Merîwanê


Dîmenek Ji Şahiyekê

Merîwan heta salên dawîn ku li ser rêya Sine gundekî biçûk bû, tenê bala rêwî û bazirganan dikşand. Di sala 1960'an de şaredarî hat damezrandin û jeneratorên karebayê hatin çêkirin. Di sala 1955'an de li bajêr dû heb dibistan hatin vekirin û di sala 1960'an de ji bo ava malan dû bîrên mezin hatin kolan. Piştî vê demê li Merîwanê jiyana bajarvaniyê destpêkir. Piştî sala 1942'an gelek kesên ku ji şer û xelayê reviyan hatin li Merîwanê bicîh bûn û bajêr di carekî de mezin bû û şêniya bajêr zêde bû. Bajêr bi navên Serwabad, Sarşeyan, Merkezî û Sarhad li taxan belavbûye. Di demên dawîn de ji ber geşbûna şêniyê hin taxên din jî li bajêr zêde bûye.

## Perwerde ya kurdî

Li Merîwanê bi navê Danîşgehî Peyamnûr zanîngehekî tê çêkirin. Danîşgeh li dervayê bajêr li ser rêya Zirîwarê tê avakirin. Li Merîwanê çend dibistanên bilind jî hene. Li eyaleta Kurdistanê di dibistananan de li gel Farsî, dersên kurdî jî hene û mamoste û xwendekar bi kurdî diaxifin. Di dibistana navîn de mamoste dersên kurdî didin xwendekaran û û zarok di navbera xwe de bi Kurdî diaxifin. Li gor pergala rejima İranê, keç û xort di dibistanên cuda de perwerde dibînin. Keçên xwendekar di dibistanê de unîformayên reş girêdidin û li gor pergala İslamî serê xwe digrin. Herwiha mamosteyên jin jî uniformayên İslamî li xwe dikin û serê xwe digrin.

## Mîmariya otantîk

Dema mirov dikeve nav Merîwanê, şînahiya bajêr, park, daristanên biçûk, însanên bin siya dara û paqijiya kolanan bal dikşîne. Merîwan bi mîmariya xwe ya otantîk û kurdewarî li aliyekî dişibe bajarekî rojhilatî, bi kolan, pakijî, meydanên fireh, xeml û peykerên xwe jî dişibe bajarêkî rojava. Di salên dawîn de li nav Merîwanê parkên nûjen hatinê çêkirin. Ev giravên kesk ku ji darên cûrbecûr pêk tên, di nav mal û taxan de wek deverên bêhdanê di jiyana bajarvanîye de cîhekî girîng digrin. Li parkên Merîwanê zêdetir însanên kal û zarok digijin hevûdû. Parkên bajêr bi taybetî rojên înê ji alî kesên betilandî tên dagirkirin. Sîya dara, dengê balindeyan, rengê çîçekan, bîhna nabatan û çoşa zarok û xortan hemû mandîbûna însanan digre. Parkên bajêr di mehên havînan de heta derenga şevê xalî manînin û roja din dîsa li benda mêvanên xwe disekinin.

## Sûka sergirtî

Sûka sergirtî yanê Bazarî Merîwan, li bajêr yek ji avahiyên balkêş e. Bi giştî li Rojhilatê Kurdistanê hîn jî sûkên sergirtî di aborî û bazirganîyê de cîhên girîng digrin û xwedî lazmatî, pêdivîyên xwe ji van sûkan tedarik dikin. Her kolanekî sûkê ji bo beşekî hatiye veqetîn. Kolanên teng, baniyê girtî, dikkanên biçûk, koma muşteriyan, dengên firoşkaran, bîhn û dîmenên ku ji bazarê belavdibe tabloyeke çîrokî radixe ber çavan. Sûkên Kurdistanê di salên dawîn de wek pasajên modern hatine guhertin û ji lazmatiyên elektronîk heta pêdiviyên şexsî li dikkanên van sûka tên firotin. Merîwan ku li ser sînorê Başûrê Kurdistanê ye, di bazirganiya heremê de cîhekî girîng digre. Bazara Başmag ku bazirganiya sînor lê tê kirin, rojanê xwedî hecma milyonek dolar e. Başmag di sala 1950'an de hatiye çêkirin û ji 17 km li rojavayê bajêr û li nêzî gundê Başmagê ye.

## Hesingerî

Agirê korikê û hesingerî yanî ahengerî ku li Kurdistanê hîn jî yek ji pîşeyên toreyî ye, li Merîwanê jî didome. Li herema Hawraman hîn jî jiyana gundayetî û awayên kevnare zindî mane. Ji ber ku li heremê teknolojiya nûjen gelek lewaz e, gelê heremê lazmatiyên xwe ji pîşekarên kevnare temîn dikin. Das, tevr, qazme, balte, gîsin, kêr, menteşe û gelek lazmatiyên din ji alî hesingeran ve bi awayên sedan sal berê tên çêkirin. Hesin di korikê de tê sorkirin û paşê bi şeklên cuda tê birîn û di xizmeta însan de tê bikaranîn. Li Merîwanê hesingeriya sar û ya germ bi hevre li kêleka hevûdû tê kirin. Li Merîwanê hîn jî li gelek dikkanên ahengeriyê, korika germ ji bo pêdiviya gundiyan hesin disotîne û dengê çakûçê hesingeran heta tariya evarê didome.

## Xeratî

Merîwan ji ber ku bajarekî daristanî ye, li bajer karê darvaniyê jî pêşketiye. Darên ku ji êzingên heremê tên bidestxistin pêşiyê di xîzarxaneyên bajêr de tên jêkirin û rastkirin û li bazarê tên firotan. Textên ku ji darên mazî û biyan tê bidestxistin, di sektora mobîlya û înşaatê de tê bikaranîn. Darvanî di aboriya Merîwanê de cîhekî girîng digre. Li Merîwanê yek ji pîşeyên sûkê qumaşvanî ye. Ji ber ku gelê bajêr, kincên otantîk li xwe dike, qumaşên wan kincan jî dihilbirîne. Herwiha di malan de hîn jî ji rûyê lihêv û doşekan an jî mobîlyayan, bataniye û perçeyên din jî ji cawên sûkê tê çêkirin. Di encam de ji ber vê pêdeviyê qumaşçêkerî di atolyeyan de didome.


Gola Zirîwarê

## Çoxurane cilê Hawraman e

Qumaş an jî bataniye bi giranî ji benikên rîs tên honandin. Ev benik jî zêdetir ji mû, hirî an jî pirçên lawiran tên bidestxistin. Gogên benikan di makineyan de tê rêzkirin û li gor neqş û xeml û motivan tên tevndan. Li Merîwanê her atolyeyekî qumaşçêkeriyê giranî dide karekî. Qumaşên ku ji van kargehan derdikevin, diçin ber destê terziyan. Terzî yanê xiyatên Merîwanê di çêkirina cil û bergên otantîk yên Kurdî de navdarin. Çoxurane, Rank, Melkî, Cemane, Peskan û Fîrencî ku modelên kincên Hawramanê ne, di nav gel de bi awayekî berfireh tên lixwekirin. Li Hawraman havînê Rank û Çoxe û zivistanan jî Fîrencî û Peskan tê lixwekirin. Bi giştî kincên xiyatî ji hiriyê tên çêkirin. Ji ber bayixdana kincên klasîk yên kurdî, li heremê konfeksîyon pêş neketiye û gelek kes debara xwe bi terzitiyê dike. Hawramî heman girîngiyê di kincên jinan de jî nîşan didin. Lê kincên jinan zêdetir ji bo nav malê an jî şahî û rojên taybetî tên bikaranîn. Rejima İranê ji ber ku li ser jinan girêdana İslamî ferzdike, cil û bergê jinan yên klasîk li kolana zêdetir nayê lixwekirin.

## Salîh Mûslîm:

# Ji bo parastinê ji me re çek lazim in



Pêvçûnên di navbera YPG û rêxistina DAIŞ'ê de ku Kobanê ji sê milan dorpêç kir didomin. Ji ber ku dora Kobanê ji aliyê DAIŞ'ê ve hat dorpêçkirin û bi tu awayî piştgirî nagihêje bajêr, Meclîsa Kantona Kobanê seferberî îlan kir. Gelê heremê jî yekser beşdarî hêzên YPG û yên asayîşê dibin bo berxwedana li hemberî DAIŞ'ê. Li gor çavkaniyên YPG'ê heya niha di şerê navbera wan û DAIŞ'ê de bi sedan çekdarên DAIŞ'ê hatine kuştun. Hat ragihandin ku 50 kesên ku hin ji wan sivîl û hin jî YPG'î ne di şerê DAIŞ'ê yê digel tank,top, wesayîten bi zirh û çekên giran de jiyana xwe ji dest dane. Agahiyên ku DAIŞ çekên radyoaktif bikartîne jî di nûçeyên herêmê de cîh digrin. Herwiha tê gotin ku şer bi taybetî li heremên wek Carqile, Korbelek, Hesen, Çarûxlû, Evdiko, Mixare û Kolikê ku li rojava û başûrê Kobanê cîh digirin diqewime û li gor îddiayan ew wargeh car car dikevin destê DAIŞ'ê. Di pêvçûnan de heta niha 6 tank û gelek wesayîtên şer yên DAIŞ'ê hatin derbekirin.
Di vê navberê de li Bakûrê Kurdistanê jî HDP û BDP bi beşdariya şaredar û parlementeran li ser sînor çalakiyan li dardixe û konê piştgiriyê jî hat vedan. Çavli rê ye ku çalakiyên piştgiriyê li Ewropa jî belav bibin.

**Salîh Muslîm: Em li benda piştgiriya Başûr in ku çek û teçhizata teknîkî ji me re bişînin**

Hevserokê PYD'ê Salîh Mûslîm piştî êrîşên li dijî Kobanê hewarî ji bo hêzên kurdan kir û xwest ku hukumeta Başûr piştgiriyê bide wan. Mûslîm ji BasNûçe re ev raman par ve kir; "Di warê leşkerî de zêde kêmasiyên me nîn in lê di warê alavên teknîkî û zirhî de em di tengasiyan de ne. DAİŞ bi wesayîtên zirhî yên artêşa Iraqê êrîşî me dike. Divê çekên ku em li hember wan bikarbînin hebin. Em ji rêveberiya Başûrê Kurdistanê dixwazin ku van çekên teknîkî bidin me. Ku di warê çekî de alîkarî bidin emê kêfxweş bibin. Heta dibê her kurd alîkariya me bikin. Ku berxwedana Rojava gihîştibe vê astê bi alîkariya her çar perçeyên Kurdistanê ye. Niha li gor demên berê em di hinek tengasiyan de ne, divê kurd alîkariyê zêde bikin. Li Rojava gel ketiye çemberê û ambargo heye. Bo rakirina van ambargoyan em ji hemû Kurdistaniyan daxwaza alîkariyê dikin."


Salîh Muslîm

"Berxwedana Rojava helbet bi alîkariya her çar parçeyên Kurdistanê gihêşt vê astê. Divê ambargoyên li ser Rojava êdî rabin."


Aldar Xelîl

"DAIŞ raste rast piştgiriyê ji Tirkiye distîne. Heke ku Kobanê têk biçe, ew dê bê wateya têkçûna bidestxistinên çar parçeyan."


Enwer Muslîm

"Ger ku li Rojava bidestxistin têk biçin, wê pêvajo ya çareseriyê ya li Bakûr jî wê di talûkeyêkeve. Divê hemû kurd piştgiriya me bikin."

**Em rêzdarin li hember serxwebûna Kurdistanê**

Mûslîm wekî din jî bal kişand ser ketina Musilê û diyarkir ku DAIŞ'ê li wir gelek çekên giran bidestxistine û niha jî wan li hemberî Kobanê bikartîne. Mûslîm wiha domkir, "Ger Kobanê bikeve dê îradeya kurdan jî bikeve. Vana bi çekan û bi awayekî wehşî erîş dikin. Hin hêzên tarî DAİŞ'ê bi kar tînin. Kesên erîşî me dikin têkiliyên wan bi van hêzên tarî re hene. Di serî de rejîma Sûrî û kesên ku hebûna kurda naxwazin alîkariya wan dikin. DAİŞ di rêya artêşa Sûrî de derbasbû, hat erîşî Kobanê kir, lê tu astengî li ber wan derneketin. Piştî van bûyeran ketina pêşmerge ya Kerkûkê tiştekî xwezayî bû. Divê ji xwe pêşmerge li Kerkûkê bûya û ger pêdivî hebe em dikarin bi wan re Kerkûkê biparêzin. Roj roja yekitiyê ye û divê Kongre ya Neteweyî ya Kurdistanê kom bibe. Ger kongre kom bibe dê gelek tişt çareser bibin. Ku gel biryara çi bide emê rêzê li ber bigirin. Ku biryara gelê wir serxwebûn be emê li cem wan bisekinin."

**Divê Barzanî rê yên ku li me hatine girtin veke**

Endamê Lijneya Rêvebir yê TEV-DEM'ê Aldar Xelîl jî diyarkir ku êrîşên li hemberî Kobanê dê bandorê li parçeyên din ên Kurdistanê jî bike. Xelîl wiha domkir, "Erîşên li Rojava bandora xwe li her perçeyên Kurdistanê dike. Ger ku DAİŞ li vir bi serkeve Başûr jî, Bakur jî di bandorê de dimîne. Divê partiyên Kurdistanî alîkariya Kobanê bikin. Divê her kes guh bide daxwiyaniyên Karayilan û em ji Barzanî daxwaz dikin ku rêyên girtî veke. Beriya salvegera azadiya Rojava dixwazin ku Kobanê dagirkin. Ger Kobanê bikeve qantonên din jî zirarê dibînin û DAİŞ fersenda rasterast ku alîkariyê ji Tirkiyê bistîne dibîne. Kobanê, Reqqa û Tirkiyê bi hev ve girê dide. Niha li Kobanê li kêleka şervanên YPG, gel di çepera şer de cihê xwe girtiye. Kalên 70 salî jî rahiştine çekan. Bi ketina Kobanê hemû destkeftiyên gelê kurd wê têk biçin. Kerkûk çi qas girîng be Kobanê jî ew qas girîng e. Ger ku berxwedana Kobanê bi ser bikeve Amed û Kerkûk jî bi ser dikeve."



# DAIŞ miriyên xwe diavêje bîran

Serokê Meclîsa Kantona Kobanê Enver Muslîm jî bal kişand ser êrîşên DAIŞ'ê ku beriya salvegera azadbûna Rojava destpêkir û diyarkir ku DAIŞ termen çekdarên xwe diavêje bîran û bi şûn de diçe. Mûslîm wiha got, "Erîşan beriya salvegera 19 Tîrmehê de dest pêkir. DAİŞ bi çekên giran yên ku li Iraqê xistiye destê xwe dixwaze berxwedana gelê kurd bişkîne, lê di şerê Kobanê de gelek wendayiyan dide. Ji me hetanî niha 12 kes şehîd ketine û ji wan jî zêdetirî 50 kesî. Divê kurd vê yekê bizanibin. Ger Kobanê bikeve pêvajoya çareseriya li Bakûr jî dikeve xeterê, destkeftiyên başûr jî ji dest diçin û şiyana kurda dikeve erdê. Mesele ne ketina bajarekî ye, mesele meseleya 'çawa serîhildana kurd li Kobanê destpêkir' dixwazin dîsa li vir têk bivin. Ji bo vê zextên xwe zêdetir dikin. Tirkiye jî, Îran jî, rejîma Baas jî alîkariya wan dike. Ku wiha berdewam bike mesele dipeke Tirkiyê jî. Ji ber ku DAİŞ şîrketeke û hîseyên gelek kesan têde hene. Mixalîf ji xwe re ji dûr ve li şer dinêrin, dibê qêy Kobanê bajarê Sûrî nîne û yên ku dimirin jî ne însan in. Opozîsyon bi durûyî tevdigere. Li derveve dibêjin DAİŞ terorîst e lê dema erîşî Kobanê dike dibe şoreşger. Li gorî agahiyên di destê me de tenê li Cerebluse 65 miriyên wan hene. Li Rojhilatê Kobanê bîrek mezin heye ji ber ku cenazeyên wan zêde ne wan davêjin bîra. Gelê kobanê bi kesên ku dest danîne ser Musulê, Tikrîtê, Deyrazorê re bi qehremanî şer dike. Hêviya şervanên YPGê ev e ku gelê kurd li cem xwe bibîne. Bi taybetî ciwanên Kurdistana Bakur dikarin piştgiriya YPGê bikin û bi YPG'ê re îradeya kurdan tev Kobanê biparêzin. Divê kurd piştgiriyê bidin hev. Mixabin heta niha PKK tenê daxwuyanî dayê ku li Kobanê alîkariya me bike. Em ji xwe bawerin ku dê DAİŞ tu caran nikarîbe welatê me bidestxe. Dê keleha Kobanê nekeve destê DAİŞê. Jin, zarok û hemû kes piştgiriyê didin YPG'ê. Ji destketina Kobanê tê watêya ji destketîna Kurdistanê. Ku Kobanê ji dest derê hemu kes ji vê yekê berpirsyar in. Bi taybetî gelê me yê Bakur. Em ji Brêz Mesûd Barzanî bi hêvine.



**Ji Karayilan banga piştgiriyê bo Barzanî**

Di vê navberê dê Endamê Desteya Rêvebir a KCK Mûrad Karayilan jî bi nameyekê bang li Serokê Kurdistanê Mesûd Barzanî kir û daxwaza piştgiriya Kobanê kir. Karayilan wiha got, "Divê hemû kurd bersiva seferberiya Kobanê bidin. Êrişên DAİŞ'ê yên li Kobanê stratêjîk in. Armanca destpêka êrişên DAİŞ'ê îşgalkirina Rojava ye. Eger ku îro Kobanê here, dê sibê Kerkuk jî biçe. Îro pirsgirêkên Rojava li ser PYD û El Partî'yê ketin e. Ji niha pê ve pirsgirêkên Rojava pirsgirêkên netewî ne. Ji ber vê yekê divê ji niha pê ve ambargoya li ser Rojava bê hilanîn. Divê ji niha pê ve astengiyên di navbera Başur û Rojava de bên hilanin. Divê em xwedî li gelê xwe derkevin. Di pêvajoyêk wiha de tiştê herî zêde pêwist yekîtiya neteweyî ye. Her parçeyekî Kurdistanê pîroz e. Divê mijara kombûna kongreya neteweyî bi lez di rojeva kurdankeve. Di rewşeke wek ya îroyîn de tişta herî girîng û pîroz yekitiya neteweyî ye. Heke ku sibê bi sedan, bi hezaran kes ji gelê me bimire wê wîjdana me bişewite. Ez di wê baweriyê de me ku ya we jî dê bişewite. Ji ber vê divê êdî ambargoya li ser Rojava bê hilanîn. Divê em êdî ji wî gelî xwedî derkevin. Divê hemû partî bibin yek û bi hev re têbikoşin."

**Ji bo Rojava çi pîwîstbe emê bikin**

Pişti banga Murat Karayılan, Ji serokatiya Herema Kurdistanê jî daxuyaniyek hat. Di vê daxuyanîyê de wiha hat gotin; "Ji bo Rojavayê Kurdistanê çi pêwist be em ê bikin. Berdevkê fermî yê Herema Kurdistanê Umit Sabah, Ji bo êrişên DAİŞê daxuyanîyek weşand û cîh da van gotinan; "Her parçeyek ji Kurdistanê pîroz e û divê ku li hemberî neyaran bê parêstin. Ji serî heta niha em berjewendiyên gelê Rojava diparêzin." Sabah, li ser navê Serokê Herema Kurdistanê Mesut Barzanî wiha got: "Ez carek din bang li birayên xwe yên Rojava dikim. li dijî êrişên Rojava çi pêwist be em ê bikin. Her bostek axa Kurdistanê pîroz e û ku çi lazimbe dê bêkirin. Em ji destpêkê vir ve ye ku berjewendiyên Rojava diparêzin."



# Ewlekariya Kurdistanê aram e

Rawêjkarê Encûmena Asayişa Kurdistanê Mesrûr Barzanî di hevpêyvînekê digel rojnameya VG ya Norweçî de hêviya xwe anî ziman ku piştî gelê kurd di referandûmê de biryara serxwebûna xwe bide, civaka navdewletî jî wek welatekî serbixwe Kurdistanê nas bikin.
Mesrûr Barzanî derbarê têkçûna rewşa Iraqê, ji rojname ya VG ya Norweçî re diyar kir ku pabendnebûna hikûmeta Iraqê bi destûr û rêkeftinên hevbeş li deshilatê yek ji faktorên sereke yên vê rewşê ye ku berdewama piştguhkirina aliyên siyasî û got peydabûna desthilateke totalîter bûye sedema çêbûna hikûmeteke tayîfî.
Di derbarê hebûna welatiyên Norweçî li nava refên DAIŞ'ê, Mesrûr Barzanî dibêje bi taybeti derbarê hemwelatiyên Norweçî de zanyariyên diyarkirî li ber deste wan nîn in, ji ber ku piraniya milîtanên DAİŞ'ê nasnameyên xwe duguherînin.



Barzanî wiha dewam dike; "Çekdarên biyanî yên nav DAIŞ'ê di destpêkê de ji bo şerê li Sûriyeyê hatine û lê niha jî berê xwe dane Iraqê."
Barzanî derbarê metirsiyên DAIŞ'ê de jî wiha dibêje; "DAIŞ tenê êriş nabe ser Kurdistanê, ew li ser tevahiya civaka navdewletî tehdîd e. DAIŞ xwedî artêş û pere û toreke berfireh e ji bo hejandina paytextên Ewropayê. Ji ber bê têkçûna artêşa Iraqê, me sînorekî hevbeş bi dirêjahiya hezar kîlometre digel dewleteka terorîstan heye."
Mesrûr Barzanî, derbarê dewleta Kurdistanê ya defakto de jî wiha dibêje: "Kurdistan dûrgeheka aramî û seqamgîriyê ye li nav deryayeke ne aram de, me asayişa welatê xwe bi dest xistiye û di warê aborî de jî em ji Iraqê baştir in. Tevî vê ablûqa ya darayî ku ji aliyê hikûmeta Iraqê ve bi ser Herêmê û gelê kurd de hatiye sepandin."
Derbarê serxwebûna Kurdistanê de danpêdanên navdewletî jî Barzanî dibêje: "Hêvîdarim piştî ku gelê kurd bi rêya referandûmê biryara xwe ya serxwebûnê bide, civaka navdewletî jî wek welatekî serbixwe Kurdistanê nas bikin."

# Mintiqaya Sêwregi de edetê zewacî

**Verî eke bizanayên kuçeyên de kêna esta, cinî bi mehneyê şîye keyeyê a kêna. O şekl a kêna dîyê. Mehnê ci zî sey "Ma rê banê kîra lazim o, kuçeyê şima de esto?" Yan zî xo de qeçêndo hurdî berdê, vate "No qeçek bîyo teyşan tasê awe bidê ma." No babet a kênaya keyeyî dîyê. Eke kêneke begem kerdê, dima şîyê xo dayê şinaşnayîş û vatê ma talîbê kênaya şima yê.**

NECİBE KIRMIZIGUL

Zewac cuya merdiman de cayêndo hîra gêno, çike hîrê ra diyê emrê merdimî zewicîyaye ravêreno. No semed ra zewac hedîseyêndo muhîm o. Senî ke cuya însanan ser o tesîrê mayaxorabîyayîş û mergî esto, tesîrê zewacî zî winî esto. Qandê ke mabênê mayaxorabîyayîş û mergî demêndo vîyarte yo, mayaxorabîyayîş destpêkerdişê cuye, zewac dewamkerdişê cuye, merg zî qedînayîşê cuye temsîl keno. Nê deman mîyan de cayê zewacî hîna giran o. Çike cuya merdimî vurneno û destpêkerdişê şayî yo.

Qandê ke nê hîrê demî cuya merdiman de muhîm ê, destpêkerdişê nê deman bêveng nîyo, bi edet û toreyan a yenê ca. Nînan ra zewac diha vengin o. Nê edet û toreyî tarîx ra hetanî nika her komel de estê. La nê edetî komel ra komel vurîyenê. Komelî mîyan de zî wextî mîyan de vurîyenê. Hetanî komelî mîyan de mintiqa ra mintiqa zî edetî çeşît-çeşît ê. La hema nika komelan hemin de edet û toreyî mabênê tradîsyonelî û modernî de mendê. Coy ra mintiqayan de edet û toreyê verênî tam çin ê.

Ez do mintiqaya Sêwregi de edet û toreyê zewacî ser o vindera. Sêwregi de zewac senî beno, hetanî nika çi vurîyayo, çi dewam keno înan ra qal bikera. Bitaybetî zî ma dimilîyan mîyan de. Ez do nê demî hîrê qisiman de analîz bikera: kênavînayîş, kênawaştiş û veyve.

### Kênavînayîş

Sêwregi de goreyê verî vînayîşê kêna nika hîna asan o. Hûmara kênayanê wendeyan çend bena vêşî hend bi hawayê xwazgînî vînayîşê kêna beno kêmî. La hewna zî edetê xwazgînî dewam keno. Bitaybetî kênayê keyeyî bi xwazgînî zewicîyenê. Kênayê wendayan ra zî estê ke ê zî bi xwazgînî zewicîyenê. Tabî şeklê xwazgînî tayên vurîyayo.

Verî eke bizanayên kuçeyên de kêna esta, cinî bi mehneyê şîye keyeyê a kêna. O şekl a kêna dîyê. Mehnê ci zî sey "Ma rê banê kîra lazim o, kuçeyê şima de esto?" Yan zî xo de qeçêndo hurdî berdê, vate "No qeçek bîyo teyşan tasê awe bidê ma." No babet a kênaya keyeyî dîyê. Eke kêneke begem kerdê, dima şîyê xo dayê şinaşnayîş û vatê ma talîbê kênaya şima yê. Eke nîyetê wayirdê keyeyî dayîşê kêna rê bîyê se, vatêne bêrê. Dima lajek ameyê keyeyê kêneke û aye ci rê qehwe berdê. No şekl a kênek û lajekî ya yewbînî dîyê. Feqet nika sey verî kes kuçan nêkewno û nêgeyreno veyve. Bi tawsîyeyê yewî yan zî yew merdim beno mabêncî, o şekl a kêna vînîyena. La fina siftekên cinî şinê kêneke vînenê. Nê cinî maya lajekî, waya ci, xala ci... Yanî merdimê ci yê nêzdî di-hîrê kesî benê. Eke ciniyan kêneke begem kerde tepîya lajek şino keyeyê kêneke de yewbînan vînenê. Verî kênek û lajekî yewbînan a qisey nêkerde la nika bolê ci, yew cinî înan het bena û yewbînan a qisey kenê. Edetê kênavînayîş umûmen wina yo. Ney ra teber êyê ke yewbînan ra hes kenê zî demên waştî bîyê zî estê.

Nê qaydeyê kênavînayîşî kênanê wendayan de tayên vurîyenê. Bolê ci lajek û kêneke yan mekteb ra yan zî cayo ke girweyenê, uca ra yewbînan şinasnenê. No şekl a yewbînan vînenê. Eke qerarê zewicîyayîşî bidê, o wext xebere danê pêranê xo, ê zî yewbînan şinasnenê. Bê nê şeklî, ê ke usuldê xwazgînî zewicîyenê zî estê. Fina yew merdimo ke her di hetan şinasneno beno mabêncî, lajek û kêneke bi yewbînan dano şinasnayîş. Pê vînayîşê nînan umûmî teber a beno. Yanî yew kafe de çay, qehwe şimitiş a beno. Eke lajek wende bo û kêneke nêwenda bo, o wext pêranê kêneke teber a vînayîşê yewbînan rê destur nêdanê. Umûmî kêna vînayîş



Sêwregi de bi no qayde yo.

### Kênawaştiş

Qandê kênaya keyeyî qerarê waştişî dîya û tepîya, pêrê kêneke yew lîste amadê kenê. Na lîste de qelin, altunî, xelatî, mobîlya û çîyê keyeyî heme nusenê. Tayên na lîste bol bidetay nusenê tayên zî çîyanê girdan tena nusenê. Na lîste de nê estê: qelin, xelata ap û xalî, altunî, mobîlya, çîyê ceyranî (beyaz eşya), taximê qoltuxan, ortê (nivîne), sandiqe, makînaya deştene... Kêmîzêde lîste wina ya. La tayên zî na lîste de hetanî çinayanê veyve zî nusenê, çinayê teberî, ê mîyanê keyeyî, parduse, şarpa, sewlî... heme çî nusenê. Semedê nuştena nê çîyan zî wexto ke rihêl gêrîyeno, kişta lajekî vanê çi lîste de nusîyayo ma înan herînenê, çîyêk lîste de çin ê ma nêgênê. Kişta kêneke seba rehetîya kênaya xo qayîl ê ke heme çî bigirîyo. La kişta lajekî zî çend şena vanê ma tayen çî bigirê. O wext teşqele vijîyeno. Hetanî no semed ra veyve pey de açarnîyaya. Coy ra lîste bidetay nusenê. Nê çîyê ke lîste de nusîyayê mîqdarê nînan goreyê wextî vurîyeno. Xora edetê nê çîyan bellî yo. Ez vaja nika qelin 7 hezarî ra hetanî 11 hezarî vurîyeno. Altunî zî bellî yê, la tayên diha vêşî yan zî kemî gênê. Goreyê rewşa keyeyê lajekî vurîyenê. Altun zî orteleme di metreyî û nêm kordon (zincîr) yan zî herinda kordonî de frenk baxî, hîrê yan zî çar citeyî bazinî, bazino axitme, giştaneyî, goşareyî. Ê diha dewlemend bê, nînan sey set zî wazenê. Ê ke diha feqir ê, bazino axitme nêkenê la kordon û çar citayî bazinî standard ê, heme mecbur ê ke bigîrê. Kênanê keyeyî de heme çî kişta lajekî ya yeno girewtiş.

Qaydeyê na lîste kênanê wendeyan de vurîyeno. Bolê înan de lîste çin a. Ê ke lîste nusenê zî tena qelin û altunan nusenê. Sewbîna çîyê bînî xora zanê do çi bigirîyo. Yew keyeyî rê çi lazim o se, heme gêrîyeno. Eke bigirê-nêgêrê qerarê ci lajek û kêneke danê. Çîyê ke tîya de balkêş o, ez qayîl a ey ser o vindera: qelin!

Qelin hedîseya zewacî de çîyêndo negatîf o. Bol mintiqayan de hewadîyayo la çi heyf ke Sêwregi de dewam keno. Şertê qelinî heqîqeten merdiman maxdur keno, bitaybetî zî kênayan.

Wextê verî de hema-hema ma heme komelan qelinî vînenê. Nika bol komelan de hewadîyayo. La hewna tayê cayanê sey Sêwregi de dewam keno. Ez vana qey semedê girewtişê qelinî qandê ke kêna umrê xo hîrê ra didiyê ci keyeyê mêrdeyî de ravêrnena coy ra yo. Umûmen kêna mabênê 15-25 serran de zewicîyena. Kêna hetanî nê serran keyeyê pîyê xo rê xizmet kena. Zewicîya û tepîya a do keyeyê şarî rê xizmet bikera. No semed ra çi rê pereyê cihêzê kêna tunika pîyê ci ra bivijîyê ke, çi rê keyeyê şarî rê mesref bikero ke! Semedê diyin zî wexto ke kêna zewicîye, keyeyê pîyê xo ra çi cihêz bero kes nêşeno ê cihêzî ci ra bigîro. Wexto ke verdîyo zî çîyê ke keyeyê pîyê xo ra berdê înan hemin gêna. Coy ra seba kes nê çîyan nêşeno ci ra bigiro pîyê ci zî vano wa kênaya mi rehet bikera, wa heme çîyê ci temam bo. La tîya de çend rehetîya kêna bifikirîyo zî peynî de fina pîyê kêna tunika xo fikirîyeno! Her di semedan de zî pîyê kêna vano wa tunika mi ra pere nêvijîyê. Ney ra teber qelino ke gêrêno heme cihêzî kêna rê xerc nêbeno.

Sewbîna zî tayê girewtişê qelinî aznenê dînê îslamî. Yanî vanê ma qelin nê, mehîr gênê. La seke ez zana, mehîr cîya yo. Mehîr, wexto ke mareyê kêna birnenê, o wext kêna wazena. Tabî no mehîr verê mareyî bellî beno. Mehîr dîyêno kêna. Ne heqê pîyê kêna ne zî ê mêrdeyê ci mehîr de esto. La qelin, pîyê kêna gêno. Yanî kokê qelinî dînî nîyo, sosyolojîk o, ekonomîk o. Ê ke heqîqî musulman ê, xora qelin nêgênê. Bi kilmîye, semedê qelingirewtişî çend masum biaso zî masum nîyo. Qet çi semed ra qelin bigirîyo zî hem goreyê dînê îslamî heram o hem zî qîmetê kêna peran a nîno peymitiş. Qelin nîşanê bêqîmetîye yo, nîşanê bindestîya kênan o, nîşanê cîyabîyayîşê kêna û lajî yo.

Sêwregi de se ra neway qelin gênê. Ê ke nêgênê zî estê la tay ê. Umûmen, ê ke rewşa ci dewlemend a yan zî heqîqî musulman ê û vanê qelin heram o, nê semedan ra nêgênê. Qelingirewtiş zî goreyê kênaya wenda û nêwanda vurîyeno.

Qelin hedîseya zewacî de çîyêndo negatîf o. Bol mintiqayan de hewadîyayo la çi heyf ke Sêwregi de dewam keno. Şertê qelinî heqîqeten merdiman maxdur keno, bitaybetî zî kênayan.

Kênayê ke nêwendo goreyê wendayan diha rew zewicîyenê. Umûmî kênanê keyeyî ra qelin gêrêno. Kênaya keyeyî qelinî rê îtiraz nêkena. Çike goreyê totikê aye qelinê aye peymenê, çend qelinê ci vêşî bo hend xo biqîmet hesibnena. Qet yew qayîl nêbo qelin bigiro yan zî goreyê edetî tayên bigîro se derheqdê înan de dedîkodu zî benê. Vanê, "Kêna xo belaş daya, kêna ci ser o menda!" Yan zî "Eceba çîyêndê kênaya ci esto ke qelin nêgênê! Hema kêna xo kerd şarî ser a." No babet a bol qisey vajênê. Coy ra seba nê qisan zî qelin gêrêno. Qelin nêgirewtiş nîşanê bêqîmetîye yo. Umumî pîyê kêna vanê "Ma girewto la ma heme kêneke rê xerc kerdo. Ma rê çîyêk nêmendo, ma xo het ra zî nayo ser." La nê qalî zafê reyan raşt nîyê. Mi çorşmedê xo ra çend numûneyî dîyê se, kesî qelin heme cihêzî kêna rê xerc nêkerdo.

Welhasil kênaya keyeyî nêşena vaja ez qelin nêwazena. Xora vanê ma belaş nêşinê. Qelin ra nêlebayênê.

Kênayê wendayî zanaye yê, zanê ke qîymetî merdimî peran a nêpeymêno. No semed ra qelin nêwazenê. Feqet pîyê kênayan qet winî nêfikirîyenê. Goreyê înan kênaya wenda rê mesrefê wendene bîyo û zewicîyaye tepîya do peranê xo bido mêrdeyê xo. Yanî pîyê ci rê faydeyê xo çin o. Coy ra gereka diha vêşî qelin bigirîyo. No semed ra zewacê kênayanê wendayan de qelin problemêndo gird o. Kêna qelin biwazo mêrdeyê ci qebul nêkeno, ser o zî vano ti wenda ya, ti senî wina cahîl bena, no wextê qelinî yo? Eke qelin nêwazo may û pîyê ci, ci ra herîdyenê. Yanî orte de manena. Hele ke kêna unîversîte qedînaya la nêxebitîyena, derdê aye diha giran o. Eke gelin nêgêro nêşena xo rê cihêz bikero, pîyê ci quruşê pereyî xo het ra nêdano. Eke qelin bigîro na fine zî bena mehcub, bena cahîl! Ê ke no semed ra yewbînan ra abirîyayê zî estê. Eke kêna xebitîyena şena vaja ez qelin nêwazena. Xora ê ke qelin nêgênê bole ci xebitîyenê. Yanî şenê xo rê cihêz bikerê. Bi kilmîye, kênayê wendayê ke xebitîyenê umûmî qelin nêgênê. La ê ke nêxebitîyenê ê zî umûmî qelin gênê.





# Kurd û tirk wê entegre bibin

**Dengir Mir Mehmet Fırat demek dirêj di nava AKP'ê de xwedî cihekî girîngbû. Beriya ku îstîfa bike, Cîgirê Serokwezîr bû. Fırat di derbarê mijarên wek pêvajo, serxwebûna Başûr, Ocalan û pêşerojê de bi rojnameya BasNûçe re axivî.**


RAWÎN STÊRK

Cîgirê Serokwezîr Tayyip Erdoğan ê berê Dengir Mîr Mehmet Firat diyar kir ku pêşveçûnên di derbarê çareseriya pirsgirêka kurd de dibin cihê hêviyan, tirk û kurd û xwedî hevkariyek dîrokî ne û di pêşerojê de entegrasyonek balkêş dê di navbera herdû gelan de pêk bê. Fırat got, "Piştî ku TRT6 hat vekirin êdî polîtîkaya dewletê ku hebûna kurdan înkar dikir têk çû. Kurd divê êdî giraniya xwe bidin siyasetê. Pêvajo êdî gihêşt asteke ku paş vê nayê vegerîn. Ji bo ku giraniya kurdan a di siyaseta Tirkiye de xwe nîşan de divê em denge xwe bidin Demirtaş."

Fırat cara yekem daxuyand ku sedema îstifakirina wî, bi zimankirina ku di warê ziman de kurd rastî jenosîdê hatine û dijderketina Erdoğan a li hember vê bûye.

**Hûn bi salan di nav AKP'ê de man. Derbarê çareserkirina pirsgirêka kurd de hûn nêzikbûna AKP ji dil dibînin?**

Tirkiye dixwaze pirsgirêka kurd çareser bike. Ji ber ku hat famkirin, ger Tirkiye dixwaze li Rojhilata Navîn hebûnê nîşan bide, ev li ser şîrikatiya îslamê ne pêkan e. Ji xwe mislimatî hezar sal berê wek şîa û sûnî bû du par û Tirkiye jî pêşengtiya mislimanên sûnî dike. Paşê bi bûyerên li Sûrî û Iraqê têkilî xirab bûn, bi awayekî Tirkiye ji cîhana ereban hat bidûrxistin. Bi ya min Tayyip Erdoğan fam kir ku ancax bi kurdan re dikare bibe hêzeke mezin a herêmî. Demek dirêj kurd û tirk bê problem bi hev re jiyan. Ev rewş hetanî dema komarê jî berdewam bû, beriya wê jî di salên 1860›î de dema otorîteya navendî hat xurtkirin. Helbet di salên 2000'an de Tirkiye di rêya Yekîtiya Ewropayê de mecbûr ma ku rêbazên Kopenhakê pêk bîne. Hat fêmkirin ku her dem sedema şer tirk in û kurdan li hember van neheqiyan serî rakirine. Ev rastiyeke dîrokî ye. Tirkiye fêmkir ku heke daxwaza demokratbûnê pêwîstbe, û bibe hêzek herêmî tenê alternatîfa Tirkiye ev e. Ji bo vê hevkariyê di serî de AKP bê dilê xwe hin tişt kirin lê ev bû sedema ku di derbarê kurdan de rastiyê bibîne û vê rastiyê jî hînbûnek da ber Tirkiye. Li gor vê divê pêvajo berdewam be. Ji xwe ne pêkan e ku pêvajo bê sekinandin. Li vir leza pêvajoyê girîng e. Hevdîtinên di vê dawiyê de yên li meclîsê û guherandina di qanûna MÎT'ê de bo hevdîtinên bi Ocalan û PKK'ê re bi encam bibe hat çêkirin. Bi ya min ev gavek girîng e, ji xwe gavek mezintirîn jî êdî nîne. Gavên mezin li paş man. Ku hinek jî wêrekî bê kirin û çend gavên din werin avêtin pirsgirêka kurd bi piranî çareser dibe.

**Gavên dibê bêne avêtin ku nehatine avêtin çine?**

Di serîde dibê rewşa şer bê bidawîkirin. 30 sal e ku bi zordayîna tirka milet diçe çiyê. Ku li Tirkiyê mafên mirovan bi cîh bê, dewletên din jî dê midaxaleyî hin tiştan bikin. Ji ber ku peymanên navneteweyî ku Tirkiye jî alîgir e, vê nîşan dide. Helbet divê nasnameya kurd nebe pirsgirêk. Di hilbijartinê de astengî li hember partiyên kurdan heyî divê bêne rakirin. Di navbera demokrasiya Tirkiyê û Kurdistana Tirkiyê de pir cihêtî heye, ji ber ku gelek salan bi rewşa awarte hat birêvebirin û faktora PKK'ê jî bandor lê dikir. PKK'ê astengî xist pêşiya partiyên din yên kurd û nehîşt kes derkeve pêş. Ji ber vê teybetiyê ya Marksîst û Lenîlîst muhafazakarên kurd dengê xwe dan AKP'ê. Ger rewşeke azad bê çêkirin gelê kurd giraniya xwe di siyasetê de dikare nîşan bide. Ji bo wê normalbûna siyasetê gavek girîng e. Li vir tenê kar nakeve stûyê dewletê, bar dikeve ser pişta PKK'ê û saziyên wê jî. Ger bi rastî jî demokrasiyê dixwazin divê rê li pêşiya partiyên din jî vekin. Encax bi vî rengî gelê kurd azadiya xwe ya rastîn dikare bi dest bixe.

**Min got jenosîd li kurda hat kirin, bi Erdoğan ve em veqetiyan Heft bendên di paketê de ku niha li meclîsê tê nîqaşkirin yên ku Ocalan dixwaze ne. Bê xwasteka Ocalan pêşniyarek dewletê nîn e? Ev ne pirsgirêkek e? Ku sibê daxwazên gel ji yên Ocalan biborin dê çi bibe? Wekî din jî meseleya ziman di pakete de nîn e?**

Helbet xwasteka girîng a kurdan çareseriya meseleya ziman e. Ev xwastekek bingehîn e. Sedema veqetîna min ya ji cîgirê serokatyiya AKP jî ev bû. Ji ber ku zimanê her kesî ji mafan wêdetir ji ber însanbûna wî tê. Tunekirina zimanekî tunekirina mirovahiyê ye. Ez vêya wek jenosîd bi nav dikim, ji ber ku bi deh hezaran însan zimanê xwe ji bîr kirine; wek min û wek zarokê min. Min zimanê xwe nizanibû û ji ber vê sedemê wateya kurdîbûna min jî nema. Qasî tê bîra min di civîna Lijneya Rêvebirina Partiyê de em li ser 'kurd çima dengê xwe didin AKP'ê' diaxivîn. Min got ku divê êdî qedexeyên li ser kurdî werin rakirin. Divê bi destê dewletê di radyo û qanalan de bingeha weşanê bê danîn. Banqe û saziyên dewletê bi dayîna reklamên kurdî bingeha vê çêke. Bo lêkolînkirin û pêşxistina kurdî rê were vekirin, ji ber ku hezar sale ev ziman li ser pişta feqî û medreseyan pêşve diçe. Serokwezîr wê demê ev qebûl nekir û ez jî mecbûr mam ku ji wir biqetim, min îstîfa kir. Ji bo hemwelatiyekî kurd ziman girîng e, ez dixwazim bibim mirovekî ku zimanê xwe dikare biaxive. Di serîde ev wazîfa hemwelatîbûnê ye. Di demokrasiyan de her kes xwedî mafê hevpar e ango tirk xwedî çibe, kurd jî xwediyê heman mafan e. Divê zimanê kurdî bi awayek zanistî bê fêrkirin. Di demokrasiyan de maf li gor hejmaran nayên dayîn. Li Tirkiye, berde mafê wan niha di mijara dersa hilbijartede jî pêşketinek nîne. TRT6 jî wisa ye. TRT6 gavek mezin e, tune hesibandina dewletê îflas kiriye. Ez bi vê gavê gelek hestiyar bûm, giriyam ji ber ku dewletê dest ji tune hesibandina xwe berda. Mixabin namzetên BDP'ê nehatin wir. Bi ya min birêz Tayip şansek e. Îro wek dersa hilbijarî gelek kar hatin kirin, televîzyon dikarin weşanê bikin. Hê fediyokbûn derbas nebûye. Mesela çima banqeya dewletê bi kurdî reklam nade? Ango hê tirsek heye û divê ev tirs ji holê rabe. Bi ya min ev gavên dawî ne û divê ji vê neyê tirsîn.



**Divê êdî deftera bikaranîna çekan bê girtin. Tirkiye ber bi normalbûnê diçe û hin tiştên bi xêr derdikevin holê. Divê em girayinayê bidin siyasetê.**

**AKP di warê çareseriyê de mîsyonek çawa dide Ocalan?**

Bo mirovekî tişta herî bi qîmet zarokên wî ne.

Tişta herî girîng sekinandina şer e, sekana şer jî bi hevdîtina PKK'ê dibe. Lê tu nikarî maf û azadiyên gel bikî mijara pazarê. Ger ku hûn bi rastî ji demokrasiyê bawerin tiştekî ku hûn bikin heye, qedexeyên bi her awayî rakin û ji hemwelatiyên xwe lêborîn bixwazin. Bi awayekî ew ciwanên li çiyê divî bêne daxistin û dengê çekan bê rawestandin. Çek çiqas biaxive gelê herêmê ewqas zirarê jê dibîne. Hevdîtina hukumet an jî ya Ocalan a bi Qandîlê re tiştekî xwezayî ye. Partiyek PKK'ê ya legal heye di parlementoyê de û bingeha wê heye. Tê gotin ku 35 hezar kesî div î şerî de jiyana xwe ji dest daye. Lê 30 hezar ji wan kurd in. Yên ku zirar dîtine jî dîsa kurd in. Divê ev defter êdî bê girtin.



**Ji bo ku ev defter bê girgin divê aştî hebe û ji bo ku aştî hebe jî wekhevî divê. Lê wekheviyek wiha di nava civakê de nîn e. Di pêşerojê de wekhevî pêkan e an na?**

Li gorî min ev mimkûn e. Xwepêşandanên ku li çend bajaran derdikevin û yên nijadî nenêrin. Ev mesele di hilbijartinan de bi encam dibe. Li rojava dengen AKP zêde dibin lê li Kurdistanê zêde nabin. Lewma pirsgirêkek 150 salî di rojekê de nayê çareserkirin ev ne hêsan e. Divê ku ev hêdî hêdi bê kirin ku civat bielime vê û li dij dernekeve. Çimkî, civat diçe ser sindoqê û tu partî jî naxwazin ku desthilatdariya xwe wenda bikin. Ji ber vê yekê divê ku civat bê kontrolkirin û gav hêdî hêdî bên avêtin. Divê ku dewlet vê nişan bide; min zimên azad kir welat nehat parçekirin, min bêşa Kurdolojiyê vekir dewlet nehat parçekirin. Civat ji piştî demekê ferî hin tiştan dibe helbet. Dema ku TRT6 hat vekirin gelek îtîraz hebun lê niha ev îtîraz li holê nîn in. Eger ku pêşketinek hebe divê sebir jî hebe. Tiştên ku herî zêde min ditirsînin ev în ku lî Rojavayê Tirkiyê êriş li hemberî kurdan pêk bên. Operasyonên leşkerî ne pirsgirêk in. Ew têne rawestandin lê ev êrîşên di nava civakê de tişta herî bi talûke ye. Ez hêvîdar im ku rojekê wê kurd êdî bibêjin 'em azad an'. Bi ya min ev roj pir ne dûr e.



**dewlet di meseleya çareseriyê de ne ji dil e. Li aliyê din jî qereqol û qeleqol tên çêkirin û ji bo cerdewaniyê qatroyên nû tên vekirin. Gelo fikra 'ne ji dil' piştrast nake?**

Li Tirkiyê tu caran partiyeke ku ji aliyê gel ve hatiye hilbijartin nebû desthilatdar. Ji berê heta niha ji partiyên siyasî re gotine hun herin bi memûr û meaşên wan re mijûl bibin, destê xwe nedin demokrasiyê, destên xwe nedin azadiyê. Di 2002'an de dema ku AKP bu desthilatdar, leşker di ketin nav kar ku dest bavêjin desthilatdariya AKPê û tu carî leşkeran AKP qebul nekir. Dema ku em bun desthilatdar me xwest ku ji bo guhertina vesaziya îdarî qanunekê derxin lê ev ji alîyê serokkomar ve hat astengkirin. Li Tirkiyê cara yekem partiyek siyasî di 2011'an de serdestiya xwe peyde kir. Lê ev peydekirin ne li ser her tiştî ye. Qerekolan kî ava dike? Leşker ava dike. İro leşker bi vê pêvajoyê kefzweşe an na? Ev ne dîyar e. Niha desthilatdariya sivîl di nav du dîvaran de maye. Gel li hemberî avakirina qerekolan e. Li gori min divê ku qerekol neyên avakirin. Hem leşker hem jî PKK li hemberî normalbûne carina dikavin nava hewildanan. Ji bo ku rê li ber provakasyonan bê girtin divê ku rojek ji ya din zutir dest ji çekan bê berdan û ev mijar li meclîsê bê niqaşkirin, an jî li derveyî meclisê bê nîqaşkirin.

**Dema ku Bakur serxwebunê îlan bike, gelê bakur wê çewa li gavên ku ji alîyê dewletê tên avêtin binêre? Piştî serxwebûnê qîmetek wan gavan dimîne?**



Dema ku em li erdnîgariya kurdan dinêrin, em dibinin ku têkiliyên di navbera kurd û erebande wek yên tirk û kurdan in. Em dikarin sinorên di navbera kurd û ereban de, farsan de xêz bikin. Lê em nikarin sînorên di navbera kurd û tirkan de xîz bikin. Ji ber vê yekê tirsa ji Kurdistana serbixwe bê wate ye. Eger ku li Tirkiyê demokrasî hebe û civat bi jiyana xwe kefxweş be wê çavên Rojava û Başur jî li Tirkiye'be. Li gorî min piştî demêkê wê entegrasyonek derkeve holê. Bilî parçebunê, wê yekgirtinek pêş bikeve. Ev yekgirtin ne bi navê dewletek be jî dibe ku di warê aboriyê de bê holê. Ez bawer dikim ku Tirkiye jî ji fikra serxwebûnê natirse. Lewre ez bawerim ku rastî ditin e. Tirk êdî gihêştina fikra ku li heremê nikarin bi ereban re tevbigerin, lê êdê zanin ku tevgerîn bi kurdan re êdî pêkan e. Tirkiye hewceyê enerjiya kurdan e, kurd jî hewceyê riya bazara cîhanê ya bi riya Tirkiye ne.

**Ku Tayyip Beg bibe serokkomar dê li Tirkiyê çi guherîn çêbibin?**

Tayyip Beg, wek enstûrmaneke siyasî cûdakirinê û ji hevqetandinê bi kartîne. Kesên ku wek wî difikirin dikşîne cem xwe û kesên ku wek wî nafikirin ji xwe bi dûr dixe. Li gorî min wê di rêya hilbijartina serokkomariyê de jî dîsa jihevqetandinê bikarbîne. Ev polîtîka ne rast e. Dema ku em li polîtîkaya AKP'ê ku îro jî mayînde ye dinêrin meriv dibîne ku sîstema serokdewletiyê ne rast e. Tûzika wan wisa dibe. Makezagona 82'an mafên zêde dabû serokkomar û AKP ew qanûn guhart. Lê niha ketine pêy sîstema serokdewletiyê. Lê ez ne bawerim ku wan ji sîstema serokatiyê tiştek fêmkiribe. Sîstema serokarewletiyê ne rêbazek baş e ji bo Tirkiye. Ji ber ku sîstem ne li ser federalîzmê ye. Dema ku rewş wiha be û sîstema serokdewletiyê bê, wê demê tiştekî ku li cîhanê nehatiye dîtin li vir diqewime.

## Ezê dengê xwe bidim Demirtaş

**Li tirkiyê hin kes Erdoğan wek dîktator bi nav dikin û di jargona siyasî ya navneteweyî de jî wek Putînê Rojhilata Navîn tê bi nav kirin. Ji bo nêrîna wî ya li ser enerjî û sîyasetê?**

Ev meseleya qarakterê ye. Erdoğan, serokwezîrekî wisa ye ku baweriya wî bi xwe heye, pirsgirêkên wî yên ragihandinê hene, ji hiqûqê kêfxweş nîn e. Ligel vê yekê piştgiriya civakê bi wî re ye. Ev ne rast e ku wek diktator bê bi nav kirin lê hinekî otorîter e. Putîn jî kesekî di navberê Erdoğan û diktatoriyê de ye. Piştî ku Erdoğan wek serokkomar hat hilbijartin, em nizanin ku dê rewş çeva bibe lê ez ne bawerim ku wê rewş baş bibe. Çimkî, sîstem li gorî kesan dîzayn nabin. Dibê ku Tayyip Beg van derfetan bo dîktatoriyê nîn e. Lê kî dikare qerentiya kesên piştî Erdoğan ku wê bibin serokdewlet bide? Ji ber vê yekê dema ku sistem tên dîzaynkirin divê ku îhtîmalên herî xirab li ber çavan bên girtin. Ez dixwazim li ser hilbijartina serokkomarîyê vê bibêjim; wê dengen kurdan, bibe xwediyê bandorek mazin. Ez tû caran nebum PKK'yî, min tu caran ji Marksîzmê, Lenînîzmê û ji şidetê bawer nekir. Lê ligel her tiştî ez ê dengê xwe bidim Demirtaş. Ev hilbijartin bi du tûra pêk tê. Ku em kurd tevahiya dengên xwe bidin Demirtaş jî ne mumkun e ku Demirtaş bê hilbijartin. Li Tirkiyê hebûna Kurdan heye û divê ku em di vê hilbijartinê de habûna xwe diyar bikin. Ev cara yekem e kurd derfetê dibinin ku xwe wek bijareyê serokkomariyê nîşan bidin. Ez wek kurdekî xwedî fikrên ji yên wî cûdatir im jî lê ezê denge xwe bidim Demirtaş. Ji bo giraniya kurdan a di siyaseta Tirkiye de ew girîng e.

### Li gel kujerên xwe

# Qaseta gotûbêja Qasimlo

CHRIS KUTSCHERA

Roja 13'ê Hazîran a 1989'ê neyarê Komara Îslamî ya Îranê Ebdulrehman Qasimlo li avahiyeke Viyanayê, bi du guleyên ku li serê wî ketibûn û tevî du hevalên xwe hatibû qetilkirin. Qasimlo rêberê Parti ya Demokrat a Kurdistana Îranê (PDKÎ) bû. Deh salên dawîn şerê artêşa Îranê dest pê kiribû.

Piştî peywendiyên yekem di Kanûn a sala 1988›ê û Rêbandan a 1989'ê de Qasimlo ji nûh ve bi şanda Îranê re peywendî danîbû.

Yek ji muxatabê wî Cîgirê Serokê Îtîlaata Pasdaran Îranê, Mihemed Cefer Sehrewêrdî bû, ku di dema êrişê rehman Qasimlo qet wisa bi zelalî behsa bîr û ramanên xwe derbarê otonomiya Kurdistanê nekiribe. Pirs û bersiva aliyên Îranî, bi bawerî tê dayîn, ew bawer nakin ku gotinên wan belav bibin, rast e rast psîkolojî û şêwaza hizra berpirsên Komara Îslamî ya Îranê vedibêje ku di navera rêbazên nû yên siyaseta modern û serdema xelafeta Elî tê û diçe.

Gelo kujerên Qasimlo û hevalên wî, piştî bihîstina gotinên Qasimlo biryara kuştina wî dan? Yan beriya destpêkirina gotûbêjan, biryara kuştinê hatibû derkirin?

Tenê şopandina proseyê, dikare bersiva pirsiyaran bo me ronî bike. Xwendina wê belgeya awarte, rêya ji ne. Ew dikarin derbarê otonomiya Kurdistanê gotarekê bidin.”
Qasimlo bi hûrî boçûna xwe derbarê otonomiyê vedibêje:
‹›Ji bo me çar xalên serekî li pêş in:
- Otonomî, wate komnebûna desthilatê li navendê.
- Xala duyem, zimanê kurdî ye. Zimanê kurdî li herêmên kurdan dibe zimanê fermî.
- Xala sêyem, destnîşankirina sînorê herêma otonom e. Bo wê mebestê, pêwîst e faktorên erdnîgarî, aborî û ji hemûyan girîngtir vîna xelkê li herêmên ku kurd lê dijîn bê berçav girtin.
- Xala çarem, ku ji bo kurdan xala serekî ye: Lazim e asayişa navxwe ya herêma kurdan ji aliyê wan bi xwe ve bê parastin.

dibin û dibêjin bi mebesta diyarkirina dema hevdîtina dahatî, wate sibê wê telefonê bikin.
Di dîdara din de, roja 13›ê Hazîranê de Sehrawêrdî dibêje, peywendî bi hevalên Tehranê ve kiriye.

‹›We doh got: ku rayedarên Îranî dikarin di gotara nimêja înê de behsa otonomiyê bikin. Hin pirsgirêk hene ku rayedar û îmam dikarin derbarê wan bi xelkê re biaxivin. Lê lazim e bê gotin ku hin pirsgirêk hene ku me boçûn û nêrînên cuda li ser hene.”

Sehrawêrdî behseke dûr û dirêj û dûrî mijara babetê vedike:
‹›Xuyaye ku me pirsgirêkên din hene: Deh sal in mijareke germ li ser rola bazarê heye, hin kes dibêjin







de birîndar bûbû. Polîsê Nemsayê rê da Sehrawêrdî yê ku birînên wî çak bibin û nexweşxaneyê terk bike, piştre biçe balyozxane ya Îranê û roja 22 Tîrmehê jî xaka Nemsayê biterikîne.

Îraniyekî din, bi navê Buzurgiyan ku Pasdar bû, demekî li binkeya polîsan hate ragirtin, lê piştre hukmê girtina wî helweşiya û wî jî karî vegere Tehranê. Kese sêyem ku Serokê Dezgeha Nêhênî ya Navxwe, Hacî Mustefewî Lacewerdî bû, ew jî bi serbestî Nemsayê terikandibû.

### Belgeyeke awarte

Gotûbêjên ku di navbera şanda Tehranê û serokên kurd de ji aliyê beşdaran ve hatiye tomar kirin, piştî ku polîsên Nemsayê dest danîn ser kasetên Qasimlo, radestî (PDKÎ) hatine kirin.
Sekerterê giştî yê (PDKÎ) Ebdulah Hesenzade îzna guhdariya kasetê da me. Belgeyeke taybet e: Belkî Ebdulbo senaryoya jêr xweş dike:
Desthilatdarên Îranê ku agahdar bûn tevgera Qasimlo ji ber êrişên artêşa Îranê û dabeşbûna navxweyî ya partiyê (1988) de lawaz bûye û herwiha ji têgeheştina ji vîna Qasimlo bo geheştina çareseriyê bi rêya diyalogê re, hêvîdar bûn ku ev bi kêmtirîn daxwaziyan wê qayîl bibe, wate: Yasayîbûna partiya wî li Îranê.
Lê Qasimlo pêkuteya li ser vîna ragehandina otonomiya Kurdistanê ji rêveberên nû yên Îranê dixwaze.
Xumeynî 4'ê Hazîran a 1989›ê miribû, şeva 12›ê Tîrmehê peywendiyê bi berpirsên xwe ve digrin: ‹›Xuya ye ferman hatiye, wî bikujin.››

### “Otonomî bismillah a me ye”

Dora Qasimlo ye:
‘’Dixwazim ji we re ragihînim ku ez derbarê berbest û pirsgirêkên li hember otonomiyê, ku we bahskirî qayîl nebûm. Niha rêzdar Xameney û Refsencanî pêşnimêjên îna Tehranê Ev çar xal girîng in û em ji wan zêdetir tiştekî naxwazîn. Û çiqas dikarin pêk werin, em rastbîn in, bo mînak, ji bo diyarkirina sînoran, nakokî çêdibe. Ger tiştên serekî bêne erêkirin, kurd ji bo tiştên biçûk şer nakin.”

Qasimlo axiftina xwe dom dike:
‹›Mehale peyva ‹›otonomiyê›› bê guhertin. Vê peyvê wateyeke dîrokî û sozdarî ji bo gelê kurd heye. Sembolîk e, hest dikim hûn naveroka wê qebûl dikin, lê dixwazin nav bê guhertin. Dema ayeteke pîroz a Îslamê dixwînî, çênabe bê gotina ‹›Bismillahê Elrehman Elrehîm›› destpê bikin. Otonomî jî heman tişte, hûn naveroka wê qebûl dikin, lê ‹›Bismillahê Elrehman Elrehîm››ê ne.”

### Tahran otonomiyê qebûl nake

Îranî dibêjin, beriya destpêkirina gotûbêjan ku ‹›hêviyeke mezin afirandiye“ lazim e peywendiyê bi Tehranê ve bikin. Piştre ji hev cuda çênabe em rê bidin ku aboriya Îranê bê kontrolkirin û hejar weke hevwelatiyên di pile ya dûyem de bên hesibandin. Vê demê Îmam Xumeynî sax bû û digot: Îslam bi kapîtalîzm û kontrolkirina desthilatê re nîne, Îslam li navendê ye, dengê sêyemîn e û bernameya taybet bi xwe heye! Da behsa mînaka bazara derekî bikim: Yasa bê tu çareseriyekê, sê caran pêşkêşî parlementoyê hatine kirin. Piştre mecbûr bûn pêşkêşî civata diyarkirina berjewendiyên rejimê bikin.”

“Em vegerîn ser pirsa otonomiyê. Weke pirsgirêka aboriyê ye: di vê derbarê de du ra hene. Boçûneke serdema Hezretî Elî (Xelîfê çarem) wî li navenda xelafetê hukimdarî dikir, lê herêmên din jî hebûn, ku navê wan ‹›wîlayet›› bû, walî û hakim li gor otonomiyê, destvekirîtir bûn. Mektebeke din heye ku dibêje ev serdema Elî bû û şert û mercên niha cuda ne: Em ji aliyê dijminan ve hatîne dorpêçkirin, welatên ku endamên NATO yê ne, rejimên kevneperest, ku nahêlin otonomî di çarçoveya sînorên wan de bimîne. Ji bo ku bê qutbûn berdewam be, otonomî jî pirseke wisa nîne ku bi du gotarên nimêja înê de bidawî bibe.
Pirsgirêka duyem: (PDKÎ) dixwaze heman rewşê biparêze û di heman demê de bi Komara Îslamî ya Îranê re danûstanê bike, lê ez bawerim nayê pejirandin.”

Serawêrdî behseke din a ne peywendîdar pêş dixe, sîstema Îslamî çawa kar dike: ‹›Mînakeke din li ser peywendiyên derve tînim: Bi dirêjahiya çend salan, beriya ku biryarek bê girtin, gotûbêj li ser hate kirin. Ger me peywendiyên xwe bi Amerîkayê re qut kirine û navbera xwe bi Yekitiya Soviyetê re baş kiriye, biryarek nîne ku bi yek-du rojan û ji aliyê kes yan du kesan ve hatibe girtin. Axiftin li ser hatine kirin û cara dawî zêdetirî sê salan, deh sal, panzde sal û herwiha bi berçavgirtina rewşa Yekitîya Soviyetê, gihîştîne vê encamê ku bi wan re rêk bikevîn. Ji ber çi? Çimkî me pirsgirêka Efxanistan, Pakistan û kendavê heye. Ji ber ku me bi rojavayê re pirsgirêk hene. Lazim e derbarê otonomiyê jî çendîn sal gotûbêj bêne kirin. Bawer im di şert û mercên niha de, otonomiya ku hûn dixwazin, nayê pejirandin.”

Dora axiftîna Hacî Mistefewî tê:
‹›Binavê xwedê, partiyên qomunîst pişta xwe dane nasiyonalîzma Stalîn. Partiyên Sosyal Demokrat xwedî şêwazên çareseriya xwe ne. Ya ku girêdayî me ye, hêzên Îslamî, Komara Îslamî ya Îranê, heta niha me raveyek ji bo pirsgirêka neteweyan nebûye. Ger em bikarîn kareke wisa bikin ku Komara Îslamî ya Îranê bi nêrîneke têorîk û bi awayekî cidî di hizra wê pirsgirêkê debe, serkeftineke mezin e. Helbet di Îslamê de, pêxember û cîgirên wî rêbazên taybet bi xwe hebûne. Hêvîdar im rejim di vê meselê de kûr bibe û di navbera tişta ku jêre sunet tê gotin û tişta ku hûn dixwazin rêya sêyemîn peyda bikîn.







### Serxebûn, federalîzm an jî otonomi!

Qasimlo axiftina wan dibire, weke ku nikare rewşa heyî qebûl bike:
‘’Hûn dibêjin niha pirsa serekî ev nîne ku otonomî bê çareser kirin, belkî çareserî peywendiyên di navbera (PDKÎ) û Komara Îslamî ya Îranê ye. Em hatine ji we bixwazîn pirsgirêka otonomiyê çareser bikin.”
Piştre Qasimlo bi berfirehî behsa wê dike ku mafên diyarkirina qedera xwe bi awayên cuda cuda dikare pêk bê: Serbixweyî, federalîzm û otonomî.
Qasimlo axiftina xwe berdewam dike:
‹›Ji bo me pirsa serekî eve, ka gelo Komara Îslamî ya Îranê bi rastî dixwaze pirsgirêka netewan li Îranê çareser bike? Ger bersiv erê ye, dixawzin bizanîn çawa? Gelo ew şêwaz serbixweyî ye, federalîzme yan otonomî? Me Kurdan xwestekên xwe diyar kirine. Em federalîzmê jî qebûl dikin, helbet bi baweriya min ji ber ku di serdema Îslamê de jî federalîzm hebûye, federalîzm baştir e. Weke mînak Yekîtiya Komarên Federal a Îranê pêk were. Ger hûn serxwebûn, federalîzm û otonomiyê qebûl nakin, diyar dibe ku hûn naxwazin pirsgirêkan çareser bikin.”

Di dawiyê de dibêje:
‹›Belkî siberoj beşeke din ya Îranê otonomiyê bixwaze, di rêya çareseriya pirsgirêkên navxwe yên Îranê bi prensîb, wêrekî lazim e. Lazim e yasa ji bo hemûyan yek be, ji bo ereban, belûçan, turkmenan û kurdan. Ger ev pirsgirêk îro çareser nebe, di paşerojê de wê ji bo welatê me bibe serêşîyeke mezin.”

### “Yan şer berdewam dike” û dengê teqeyan

Piştî bahseke kirt, alî biryara hevdîtinê ji bo sibê diyar dikin.
Navbenkarê kurd yê Îraqî, Fazil Resûl diaxive da behsa encama gotûbêja herdu aliyan dike:
‘’Yan digehîjin encamekî, yan diyalog berdewam dibin, bê ku şer çêbibe. Yan bi berdewamiya şer re, gotûbêj berdewam dibin. Lê niha baştir e bigihin rêkeftinekî: Pêvajo niha baş e, belkî sê salên din rewş biguhure, hevsengî û nahevsengiya hêzan diguhere û rewş cuda dibe.”
Ev peyvên dawiyê ne. Dengê kursî û maseyan tê. Piştre dengekî weke çar teqeyan.
Teqe bi amûra bêdengkirina çekan? Tu dengek nayê. Dema polîs ji aliyê cîranan ve ji ber birîndarbûna Sehrawêrdî têne agahdarkirin. Dema diçine nav avahiyê, termê sê kurdan dibînin.

**Verger ji fransî: Selah Bayezîdî**
**Verger ji soranî: Dêrsim Orema**



## Qaseta gotûbêjê

‘’Silav, em li ser vê rêkeftîne ne ku ev gotûbêj bi temamî nehênî bimîne“ Serawêrdî dibêje, “çimkî hin dijmin hene naxwazin ew pirsgirêk çareser bibe...›› Sehrawêrdî berdewam dike: ‹›Heta di nav Îranê de jî, hin alî di asta rêvebiriyê de jî li dijî wê danûstandinê ne, nehalin bi eşkere behsa vê pirsgirêkê bê kirin.”

Qasimlo rasterast diçe ser mijarê:
Di hevdîtina dawî de em li ser du xalên serekî axivîn:
-Pejirandina pirsa otonomiyê.
-Azadiya çalakiyên partiya me di nava Îranê de.
We bersiv da ku rayedarên rejimê bi pejirandina binemayên otonomiyê re nînin. Derbarê xala duyem, me bi polîtburoyê re nîqaş kirin. Gelo pêşmerge wê çekan berdin yan ne? Polîtburo bawer e mehale çek bêne berdan. Hûn fahm dikin ku piştî deh salên şer û ewqas qurbaniyan, otonomî bûye sembola daxwaziyên me. Gelo lazim e peyveke din bikar were? Ger hûn naveroka otonomiyê qebûl dikin, çima ji wî navî ditirsin?››
Qasimlo naxwaze xwe weke zilamê otonomiyê pênase bike:
“Zarokên me zarokên otonomî û demokrasiyê ne.”
Berdengên xwe jî vedixwîne ku berdewamiyê bi gotûbêjan bidin û wan agahdar dike:
Helbet ger pirsgirêka kurd çareser nebe, belkî bibe sedema cudabûna ji navendê û cudaxwaziyê...››

Sehrawêrdî axiftina xwe berdewam dike:
Cara pêşîn e ku em di nava xwe de behsa vê dikin ku Îslam derbarê pirsgirêka di navbera netewan de difikire. Ji bo çareseriya pirsgirêkên xwe, em guh nadin tu kesî, ne Rojhilat, ne Rojava, em hazir in xwe ji bo bîr û baweriyên xwe biken qurbanî.”

# Qebqeba kewan li Taksîmê

BEZAR BEWAR

Dema ku şahê dengbêjan Şakiro 'delalîka' xwe dişiband kewa gozel a per belek, kew bi dilgermî din ava gotin û hêstiyariya kurdan de bi cîh dibû. Kew, ango bêşek ji çivîkan. Helbet tenê ne ew e. Wekî ku tê zanîn ê her milletekî totemekî/e xwe heye. Carina darek û carina jî heywanek. Mesele totema ingilizan şêr e. An jî yê çîniyan piling e. Yê Rûsan hurç, yê tirkan dêlegur... Totem, tişta ku ji binahî an jî di destpêka jiyanê de bi wî gelî re jiyayê û wekhevîyek di navberê de afirî ye. Wek tê zanîn totema kurdan jî kew e. Kewa gozel. Herwekî din kurd carina ku ji hev aciz dibin, dibên qewmê kew ji xwe re. Ji ber ku nêçîrvan dema diçe nêçîra kewa, kewê xwe bi xwe re dibe, datîne cîhekî û li ber kefesê dafa xwe vedigre. Kewê di qefesê de dest bi xwandinê ango dawetkirina kewên din dike. Kewên azad berv bi deng tên û dikevin dafikê. Ji bo wê tê gotin ku kew xayînê qewmê xwe ye. De li nav kurdan jî ew rewş ji destpêkê vir ve ye ku bi heman şiklî didome. Yanê kurd jî xayînê kurd e. Ev tecrübe hemû kurdên çûy û ê hatî bidestxistine û pê zanin. Ji bo vê ye mesela qewmê kew. Kew hem wek tiştekî bê xêr tê naskirin, lê li aliyê din jî wek bedewî, xweş dengî, çelengi û rengîniyê jê tê naskirin. Li ser rûyê cîhanê milletekî din ku wek kurdan ji nêçîr û xwedîkirin û kedîkirina kewan hez dike jî nîn e. Berê li gundan demsalên zivistanê bi meseleyên nêçîrvanan ku hemû li ser kewan bûn derbas dibû. Ku em vegerin ser kewên Stenbolê...

Rojek ji rojan, li bajarê herî bi qîreqîr û xirecir û tevlihev yê cîhanê, yanê li Stenbloê hê şefaqê nû avêtibû, li şaneşîna malê, li Tarlabaşî radizam. Di xew û xewnek kûr de dîsa di nava meseleyên nêçîrvanan de bûm. Û qebqeba kewan bû. Mesele bi dawî dibûn lê qebqeba kewan hê jî dihat. Wek qadrajek sînemayê. Dîmen nînbû lê deng didomî. Bi tîna tavê re hêdî hêdî ji xewê dihatim vî alî lê b imin re qebqeba kewan jî dihat. Min çavên xwe vekirin, dengê kewanbû... ne ji straneкê, ne jî ji tiştekî din dihat ev deng. Raste rast ji qirika kewekî camêr. Ez hema derketim û min da du denge kew. Carina deng qud dibû û min bazdida kuçeyek din. Bi vî avayî heta nîvro li dû dengê kewan geriyam. Nebû û min kew nedîtin. Pişt re dîsa rojekê li malê derketim û min berê xwe da Taximê dengê kewan hat. Ne tenê deng, pûrte pûrta baskên wan jî. Min li kêleka xwe nihêrî ku du sindoq, û di her sindoqekê de jî cotek kew. Ji xewê şiyarbûm. Rawestiyam û min guhê xwe da qebqeba kewên Stenbolê. Zêdetirî nîv seatê li ber sekinîm û pişt re apê Hesen hat. Xwediyê kewan, an jî hevalê kewan.



**Em axa wan ji welat peyde dikin, carna jî axa vir bi kar tînin. Axa vir temîz nîne.**

Nêçîrvanê berê. Apê Hesen (Hasan Akyüz) kurdê Mêrdînê ye. Ji Kerboranê ye û emrê wî 61 e. Beriya 20 salan, di dema şerê di navbera PKK û dewletê de, gundê wî hatiye valakirin, şewitandin û ew duçarî rojavayê Tirkiye bûye.



Hasan Akyüz

### Hesreta Kurdistanê bi kewan tînim

Dema ku tev mal û zarokên xwe ji gund derdikeve, du kewên wî hene û wan jî bi xwe re bi rê dike. Ev roje ku kewên Stenbolê qebqebin. Apê Hesen xwedîkirina kewan wek nexweşiyekî bi nav dike. Lê nexweşiyek ku her kêlî sebra mirov tîne.

Apê Hesen bi, "Mesela min û kewa ji bav û kala de tê. Wexta em zarokbûn jî em diçûn ber heywanan. Ev bû wekî nexweşiyekê ji min re. Zivistana li vir im, ku firsenda min çêbe bihara jî diçim welêt. Ev kar ji min re wek keyfekî ye, wek nexweşiyekê. Belkî hin însan hene dibêjin çawa radihêje van kewa, kewa xwedî dike. Ji nmin re wek zewqekî ye, ku ez wan nebînim sebra min nayê. Em ji bav û kala de xwedî dikin, ji me re bûye wek sebrekî. Dema pêşî ku ez hatim, rasterast nehatim Stenbolê pêşî çûm Zonguldaxê. Sê sala li wir mam, di înşeata da şixulîm. Du zarokên me jî li vir dişxulîn, em li wir, ew li vir şepirze dibûn û me biryar da em hatin vir. Em panzde bîst rojan li xaniya geriyan. Em li vir gîştin hevdû. Li vir jî hevalên me yê ji memleket hene; ya em diçûn yan jî ew dihatin serî li me didan. Elhemdila 8 zarokê min hene. Dema em nû hatin, me nikaribû biçûna welat çend sala. Min ji hevalê xwe yê Mihemedê Mala Zorik xwest, ewî kew ji min re şand. Ji min re wekê sebrekî ye kew. Wekê hevaleke meriv yê bi meriv re cixare bikşîne ye. Divê tu gelek li ser wan dîqatlî bî. Ya herî girîng ax e, ax ji wan re cihê serşûştinê ye. Divê tu xwarina wan û vexwarina wan bidî. Em axa wan ji memleket peyde dikin, carna jî axa vir bi kar tînin. Axa vir temîz nîne. Ku ax temîz nebe pirtikê wan diweşe. Genim û êm didim wan. Giya didim wan lê li vir ew giya tune. Carna qivircik didim wan, carna jî fêkiya didim wan." Van gotinan hevaliya xwe par ve kir.

## Kewê nêr li ser hêka rûnişt

Apê Hesen niha li Tarlabaşi dikandariyê jî dike. Ji aliyê din hevaliyê ji kewan re dike. Li ber dikanê di sindoqan de du cot kew hebûn lê beriya çend rojan yek ji wan çûye ser dilovaniya xwe. Li malê jî cotek kewên wî hene û yek ji won niha qurq bûye û 5 çêlkew derxistine. Piştî ku marûyê hêk kirine, kewê nêrçûye li ser rûniştiye û niha li malê cotek kew û 5 heb jî çelik hene. Du heb jî piştî ku ji hêkê derketine, rehmet kirine. Me pirsa 'nîşaneya kewê baş çi ye' jî ji Apê Hesen kir, û li gor wî kewê baş, ji xwandinê tê naskirin. Kewê baş wekê ku mêrxas be û bikeve hember dijmin bi heybeta xwe çav biriqîne ye. Kewê nebaş jî xwe vedişêre. Şerkirin ji bo kewa pir girîng e. Kewê baş dema dixwîne bi serbilindî bûrimxwastin dixwîne. Û wekî din jî kewê herî baş ji herêma Botan û li rexê Iraqê derdikeve.

Me hin bîranînên nêçîrvaniyê û meseleya 'qewmê kew' jî ji Apê Hesen pirs kir, "Dema em diçin nêçîrê me kewek li qadek vekirî girê dida. Yek jî li ser darê girê didin. Celaw û Ribab. Yê li ser darê Celaw e yê li erdê Ribab e. Ribab girîng e, fîyeta wan li hin deran nêzî 5 milyara ye. Li vir kesên ku kew xwedî dikin zehfin lê weka berê kew nemane, kêm bûne. Dêmek em qewmê kew in neyartiya hev dikin. Kew birayê hev in ku ji hev diqetin dibin neyarê hev. Kurd jî wek kewa neyartiya hev dikin. Bê kurda zêde kes kewa xwedî nake. Ez carinan difikirim pir hestiyar dibim, çima miletê me waha neyartiya hev dike. Em çima piştgiriya hevdû nakin? Em ji hev re dewlet nebûn, baş nebûn. Ez carina dibêm ez dev ji kewan berdim. Lê paşê diêrim ku sebra min bi tiştekî nayê."

Ji ber ku carina leşkeri pirsgirêkan derdixe, kaxizek fermî jî ji kewên xwe re derxistiyê û 5 salan carekê 100 tl paça wan jî dide. Apê Hesen ji ber ku gerîlayên PKK nêçîrvaniya kewan qedexe kirine hinek bi gazince lê wan mafdar dibîne. Bi xêra Apê Hesen ez jî 5 sal in ku bi qebqeba kewên Stenbolê şiyar dibim. Û Apê Hesen soza çêlkewekî jî da min.



# 'Sobe' hat pêşberî zarokan

Li Êlihê lîstika "Sobe (Veşartok)"a ku li ser jiyana zarokên karker ên li kûçeyan mendîl, av, benîştan difiroşin û zarokên berhevkarên kartonan hatiye çêkirin hate pêşandan. Lîstika "Sobe" piştî pêşandan yekemîn cara duyemîn li Salona Sînemaya Yilmaz Guney a Şaredariya Êlihê, ji bo zarok û şanohêzan hate pêşandan. Lîstik ji aliyê koma Atolyeya Tiyatroya Araf hatiye derxistin û derheneriya wê Murat Korkmaz dike. Di pêşandana lîstikê de derhener Murat Korkmaz, dayikên lîstikvanên zarok, zarokên şanohez û gelek kes amade bûn. Lîstik ewil bi sînevziyona 15 deqîqeyan a xebatên Atolyeya Araf ku dîmenên ji lîstika zarokan pêk tê hate pêşandan. Piştî pêşandana sînevziyonê zarokên karker ên lîstikvan derketin ser dike û lîstika xwe ya bi navê "Sobe" dan pêşandan. Di dema kêliyên lîstikê de temaşevanan ji zarokên lîstikvan re li çepikan da û zarokan jî hûnera xwe dan pêşkêşkirin. Di lîstikê de dem bi dem temaşevanan hatin kenandin û kêliyên trajedî jî hatin jiyandin. Piştî zarokên karker ên lîstikvan lîstika xwe bi serkeftî dan pêşandan bi deqîqeyan ji aliyên temaşevanan ve li ser piya bi çepikan hate slavkirin.



### 'Veşartok' êşa zarokên karker tîne ziman!

Lîstika ku ji 13 lîstikvanên zarok pêk tê trajediya zarokên kurd ên ji gundên xwe koçber bûne û li kûçeyan ji bo debara malbata xwe dixebitin, radixîne ber çavan. Di heman demê de lîstikavanên biçûk hemû jî zarokên karker ên ku li kuçeyan dixebitin pêk tê. Lîstik ev 9 mehe tê amadekirin û ji 15 deqîqeyan pêk tê.

### 'Ger ku em ji welatê xwe hez bikin zarokan bidin pêş'

Berpirsyarê Atolyeya Tiyatroya Araf û derneherê lîstikê Murat Korkmaz têkildarî lîstikê agahî da û diyar kir ku naveroka lîstikê ji zarokên karker ên li kûçeyan dixebitin pêk tê û got ku wan wek Tiyatroya Araf xwestiye êş û trajediya zarokan ji bo civakê bînin ziman. Korkmaz, da zanîn ku wan xwestiye ew lîstikên wek Pînokyo û Yedî Cuceler bidin lîstandin û wiha got: "Me lê nêrî ku derdê zarokan me pir mezin e, me jî lîstikek wiha amade kir. Armanca lîstikê ew e ku em derdê zarokên karker derbixin holê. Ez daxwaz dikim ku her kes li zarokan xwedî derbikeve. Ji dema me vê lîstikê derxistiye û heta niha hin bêtir kêfa me ji kûçeyan rê tê. Ez hin bêtir ji Êlihê hez dikim. Ger ku em dixwazin ji bajar û welatê xwe hez bikin, em bi zarokan re bikevin têkiliyê û wan bidin pêş."

# Ji bo zarokan ferheng

HATİCE ÖZKHAN

Bêguman qedexeya dem dirêj a li ser zimanê kurdî di erdnîgariya Kurdistanê de mijara herî bi janbû. Ji Ahemedê Xanî hetanî Baba Tahirê Ûryan û hetanî roja me kitêbên gelek ramangêrên kurd hene û wan awayekî dîroka zimanê kurdî şênber kirine. Di vir de li kêleka hişmendiya kesên ku berhem afirandine, hetanî komara Tirkiyê bê statûbûna wî û qedexebûna wî di hêla edebî, çandî, akademîk, her dem firsenda pêşveçûnê ji holê rakiriye. Di mijara pêşxistina zimanê kurdî de li erdnîgara Kurdistanê û li cihên din gelek xebat tên kirin. Ji van xebatan yek jî nû bi dawî bû ku di warê pedagojî pêşveçûna zimanê zarokan xwedî girîngiyekê ye.

Xebatata mamosteyê zimanê kurdî Fevzi Özhan ya bi navê Ferhenga Kurdî-Tirkî ji aliyê wêşanên Sîtav ve hat çapkirin. Meriv dikare bibêje ku ev xebat wek berhema Ahmedê Xanî ya bi navê 'Nûbuhara Biçûkan' ku ji bo zarokên kurd nivîsandibû ye. Berhem bo rasthînbûna zimanê kurdî, hundirîna zimanê dayîkê û herwekîdin bo zarokan ji xwe re rêzikekê vedike û ji bo pêyvên ku di jiyana zarokan de pir bikartên de jî firehiyekê nîşan dide.

Özhan ku demek dirêj e li ser vê berhemê dixebite bal kişand ser zimanê zarokan û ji bo neqilbûna ziman, giringiya zarokan bi bîrxist. Özgan wiha dibê, "Hedefa xebatê, nivşên ku temenê wan hetanî 18'an e. Ji ber wê, bo bikaranîna jiyana rojane me hewil da ku bi zimanekî sade bixebitin û bi riya vê tiştekî aram û zelal derket holê. Berhem di dawiya xebatak komî ku me çar hevalan bi hev re dikir derket. Nivîskar Qahir Bateyî, pisporê rêzimana zimanê kurdî Nezir Öcek, Mamosteyên zimanê kurdî Elif Uzunay û Şehriban Sarısaç di xebatan de cih girtin. Min jî di xebatan de wek mamosteyê zimanê kurdî û Pedagogu cih girt."

Özhan destnîşan kir ku bo zarok û xortan heya niha xebatek teybet nehatiye kirin, valahiyek di vê qade heye û ew dixwazin vê valahiyê tijikin. Özhan wiha domir, "Derbarê kurdî de zêde xebat nîn in. Li hember pêşveçûnên li Kurdistanê, di derbarê zimanê kurdî de heman hesasiyet nayê dayîn. Di heman demê de konjektûra Kurdistanê û ya zimanê kurdî di rêyek hevpar de ne. Ez ji pêşerojê bi hêvî me."

Wekî din Özhan giringiya standartbûna di navbera çar perçeyên Kurdistanê ya di warê ziman de jî nîşan da û wiha dirêjî da axaftina xwe, "Perwerdahiya bi zimanê dayîkê divê neyê nîqaşkirin. Ev mafê gelekî yê xwezayî ye. Zêde li ser nayê sekinin. Divê wek qampanyayek bê navber di derbarê ziman de xebat bên kirin. Bi çalakiyên demî mesele nayê çareserkirin. Niha ji bo gelê kurd kesên ku herî zêde dikarin biaxivin siyasetmedar in. Divê siyaset mijara ziman jî di naveroka xebatên xwe de cîh bike. Wekî din jî derdorên entellektûel jî berpirsiyariya xwe bi cî nîn in. Divê tenê ne nivîsandin û gotin, di derbarê zimanzaniyê de jî mil bidin xebatan. Ku nebe ew ziman dê têk biçe."





# Tekstîl
## sektora ku hemû mafên însanî tên binpêkirin

SEYİD FARQİNİ

Wek tê zanîn tekstîl ji sektorên ku herî zêde hewceyî ked û xwêdana destê mirovan e. Di her bêşê de her tişt yeko yek di ber destan re derbas dibe û her kêlî ked û xebatek cûda divê. Ji sektorên cîhanê yên herî mezin ku bi milyonan kes tê de dixebite û li cîhanê bi sed hezaran zarok jî di bin şert û mercên giran de têne xebitandin tekstîl e. Herwiha li Tirkiye jî rewş ji ya cîhanê ne cûdatir e û heya carina jê xirabtir e jî. Ji ber ku kedkarên tekstîlê di mercên bi zehmet, di navbera mesaiyek ne diyar û toz û qirêjiya ku dibe sedema gelek nexweşiyan de dixebitin. Tevî meaşek pir kêm, bê sîgorte û pêşerojek ne diyar.

Di gel vê yekê piraniya karkerên tekstîlê ne xwedîyê mafên xwe yên sosyal û mafê sendîkayîbunê ne jî. Bi taybetî di atolyeyên bê destur de mêtîngerî di asta herî bilin de ye. Di van atolyeyên ku gelek ji wan bê destur hatine vekirin de hejmareke zêde ku ji zarokan pêk tê jî têne xebitandin. Ji ber ku keda wan erzantir e û ji bo birêxistinbûna sendiqayan jî karkerên zarok bala karmendan dikşîne. Tevî ku bi sed hezaran kes div ê sektorê de dixebite, bisendîqayîbûn li Tirkiye di asteke ku nêzikî tunebûnê de ye. Bê destûriya atolyeyan sedema sereke ya ji bo vê ye.

Ji ber nebûna kar û derfetan jin, zarok, ciwan û pîr neçar in ku van hemû giraniyên mercan bipejirînin û di nava van zordariyan de bixebitin.

Ji ber ku karmend jî hayîdarin ji vê, şertên karkeran bêhtir giran dikin û mesaiya wan bi xwesteka xwe dirêj dikin. Li Tirkiye tu dezgeyên ku bi ciddî pişkinêriya vê sektorê û şertên xabatê yên karkeran bike jî nîn e û karker bi temamî radestî înîsiyatîfa karmendan in. Tevî hemû şertên giran, meaşa hindik û şertên ku dibin sedema nexweşiyan, xala balkêş û xeter jî tacîz e. Wekî ku herkes dizane li atolyeyên tekstîlê ku zêdetirî wan di bine avahiyan de ne û ne li ber çavan in, tacîz û destavêjî jî li van deran bê hejmar pêk tê. Zarok û keçên ku van deran dixebitin pirî caran rastî tacîza karmend an jî karkerên din tên.

Sekreterê Gîştî yê Sendikaya Karkerên Tekstîlê ya girêdayî DİSK'ê Muzaffer Subaşı li ser mijara sandîkayibunê wiha got: "Niha li Tirkiyê milyonek û sed heazar karker di tekstîlê de dixebitin lê di nav van karkeran de tenê 50 kes di nava sendîqayekê de xwe bi rexistin kirine û gihêştêne mafên xwe.

### Kardêr li dijî mafê sendîkayîbunê ne

Ji ber ku karmend dema karkerekî/ê hildigirin kar, wek şertê yekem mijjara sendiqayê bi wan dide qebûlkirin da ku nebin endamê tu sendîqayan. Ji bo vê jî karker ji sendîqayan, sendîqa jî ji wan bê hay in. Helbet sendîqayên vê sektorê jî di nava kêmasiyên kûr de ne ku xwe nagihêjinîn atolyeyan. Karkerên ku birêxistin bûne jî yên berê ku bi bixwe çûne û bûne endamê sendîqayekê. Subaşı, li ser vê mijarê diyarkir ku piştî 1980'an heta niha sendikayîbun tê sekinandin, qanûn û yasaya jî alîgiriya karmendan dikin. Subaşi wiha domkir, "Bi destê dewletê û bi rêya qanûnan rê li ber sendîkayîbunê digrin. Ji ber vê yekê hejmara karkerên ku wek endam li sendîqayekê xwe qeyd kirine bi tevahî dora 50 hezarî ye. Ligel hejmara giştî ev hejmarek pir pir kêm e. Di sektora tekstîlê de mêtîngerîya kedê gelêk zêde ye. Wezîfeya me ya herî girîng bi destxistina rêxistinê ye û bilindkirina sendîkayîbunê ye. Sektora texstîlê bi taybetmendîya kapîtalîzmê dimeşe. Ji ber ku nayê xwestin ku karker bibin xwediyê mafên sosyal û mafên sendîkal kardêr destur nadin ku karker bibin xwediyê mafên sendikal û li gorî vê armancê karker li dijî sendîkayîbunê bi avêtina ji kar tên tehdîtkirin. Ev rewş ne tenê li atolyeyên bê destur de wiha ye,li şîrketên mezin jî rewş wiha ye. Lê rewşa karkerên ku xwe gihandine mafên sendîkal baştir e. Ev karker xwedîyê mafên civakî ne û dikarin xwe li hemberî kardêran biparêzin. Em li tevahiya Tirkiyê û rêbazeke ku gel jî jê fêm bike bi belavok û hişyariyên din balê dikşînin ser mivarê. Helbet karker jî piştî ku ji hin mafên xwe û sendîqayan hayîdar dibin, dikevin nava hewildanên ku bigêjin mafên xwe lê şertên ku di destpêkê de bi wan hatine qebûlkirin riya wan digire."

> **Di sektorê de bi deh hezaran zarok jî têne xebitandin û bi gelek nexweşiyên sektorê ve rû bir û ne. Mijareke din ku zarok û keçikên karker di atolyeyan de bi tacîz û destavêjî ye re rû bi rû ne.**

### Mêtingehiya kedê di asta herî bilind de ye

Li Tirkiye niha gelek bajarên ku sektora tekstîlê xurt bûye hene. Lê navenda tekstîlê Stenbol e ku bi sed hezaran kes neçarî vê sektorê ye. Niha lî Stenbolê bi hezaran Kurdistanî jî di atolyeyên tekstîlan de dixebitin. Hin ji wan ji sedemên aborî, hin ji wan jî ji sedemên şerê li Kurdistanê koçî Stenbolê bune. Wek sektorên din zehmetiya sektora tekstîlê ji li ser pişta Kurdistanîyan dimeşe. Ji ber zehmetiya jîyanê Kurdistanî bi zarokatîyê dest bi vî karî dikin û bi zor û zehmetîya vî karî mezin dibin. Maşallah Dağ a 25 salî jî di zarokatîya xwe de ji Mêrdînê koçî Stenbolê kiriye û di 14 saliya xwe de dest bi xebatê kirîye. Dağ ku ji hîngê ve ye li qada tekstîlê dixebite, şertên kar û binpêbûna mafan wiha bi lêv kir, "Ez di sala 2002'an de hatim. Pisrsgirêkên me yên aborî hebun, li welat kar nîn e, imkanên perwerdahiyê ne li pêş in ji ber vê yekê em ji Mêrdînê hatin vir. Gelek pirsgirêkên me hene. Wek mînak sîgorte ya me nîn e, tu temînatên me ji bo pêşerojê nin in, em ji bo zimanê xwe jî zehmetîyan dibinin. Ji ber ku me nikarîbu baş bi tirkî biaxivin, em wek xwe nedidîtin. Ji ber gemar û qirêja tekstîlê gelek karker nexweş dikevin. Em nikarin bibin endamên sendîqayan jî. Karê vê derê ne li gor mirovahiyê ye. Zarokên biçûk têne xebitandin. Divê dewlet li ser vê bisekine û rewşê li gor jiyana karkeran veguhezîne."

Karkera bi navê Nilgün Yalçın jî wek Dağ, di zarokatiya xwe de dest bi karê tekstîlê kiriyê. Yalçın li ser xebata tekstîlê anî ziman ku ew di 12 salîya xwe de ji Amedê hatiye Stenbolê û ji wê pê ve di karê tekstîlê de dixebite, û mezin dibe. Yalçin wiha axivî, "Ji ber ku em kurd bun û ji ber ku em sewî bun, me gelek zor û zehmetî dîtin. Tu qîmeta me tunebu. Kardêr li gorî berjewendiyên xwe, em di şertên giran de didan xebitandin. Piştî xelaskirina kar, em diman mesaiyê û em bi saetan dixebitîn lê tu pere ji bo mesaiye nedida me. Ji ber ku em zarok bun û em hewceyê xebatê bun me nikarîbu ku deng bikin. Zehmetiya karê tekstîlê bê hed e. Dema ku sîgorte tunebe ji bo siberojê temînateke te nîn e. Sendîqa jî helbet di nava kêmasiyan de ne. Astengiyên birêxistinbûnê divê dewlet ji holê rake."



# Di wêşangeriya kurdî de 'Hîvda'yek

AZAD XANZADE

Di salên dawî de bi dehan weşanxanên bi kurdî dest bi weşana pirtûka kirin û van weşanxaneyan bi sedan pirtûkên kurdî û pirtûkên li ser kurda çap kirin. Di sala 1992'an de dema Turgut Özal Serokomarê Tirkiyê bû li ser kurdî qedexekirin hinek hat sistkirin. Piştî van nermbûnan çend weşanxaneya dest bi weşana kurdî kirin. Beriya ku li Tirkiyê û Kurdistanê weşanxaneyên kurdî vebin li Ewropa bi teybetî jî li Siwêdê ronakbîrên ji ber cûntaya leşkerî reviyabûn vir dest bi weşanên kurdî kirin û bi salan barê weşangeriya kurdî girtin ser milê xwe. Ji van weşanxaneyan Jîna nû, Roja nû, Nûdem, Apec, Helwest, Pencînar, Weşanên Welat, Enstîtuyên Paris û Stockholmê bi dehan pirtûk wergerandin û çap kirin lê bi salan materyalên li wir hatin belavkirin negîştin ber destê xwendevanên kurd. Ji salên 90›î vir ve navenda weşangeriya kurdî ji dîyasporayê vegeriya diyasporayeke nêziktir, Stenbol. Stenbol ji dema Osmaniyan hetanî niha navendek rewşenbîriya kurd bû û bi piraniya weşanan li vir dihat kirin.

Di sala 2009›an de dema qanala dewletê 24 saetan dest bi weşana kurdî kir li Tirkiyê tabûyek dijwar jî şikest. Piştî wê li zanîngehên dewletê beşên kurdî hatin vekirin û gelek xwendekar li van zanîngehan bi cîh bûn. Îsal jî Ajansa Anadolû ya dewletê, kurmancî û soranî xist nav zimanê xwe yên weşanê. Helbet van geşedanan bi tevayî rêya kurdî venekir. Hîn jî ji ber hin kes kurdî diaxivin tên girtin, di dadgehan de rêya parastina kurdî hê girtî ye û ceza li kurdî tê birîn. Tevî wan mînakan astengiyên weşangeriya kurdî jî xilas nebûne. Şîrketên belavkirinê bi bahaneyên cûr be cûr pirtûkên kurdî belav nakin. Pirtûkfiroş naxwazin pirtûkên kurdî di refên xwe de bihêlin. Li kêleka van, hîn jî hin pirûkên kurdî ji aliyê dozgeriyan ve têne qedexekirin.

> **Ji wan weşanxaneyan yek jî weşanxaneya Hîvda ye ku bi piranî pirtûkên li ser mijarên olî çap dike.**




### Perspektîfa me pêşxistina qelîteya xwendevanan e

Weşanger Huseyin Siyabend bi niyeta bi cîh kirina çanda xwendinê weşanxaneya Hîvda di sala 2004'an de li Stenbolê vedike. Siyabend niha xebatên xwe li ofîsa ku li Beyazidê cih digre de dewam dike. Siyabend di derbarê vekirina weşanxaneyê de wiha got, « Xûyê xwandinê di demak dirêj de tê bidestxistin. Bêyî wê bidestxistina nasnameya xwendewanek çalak zortir e. Tercîha xwendevan, pirtûka ku dixwîne, nivîskarê ku dişopîne çanda wî ya xwendinê derdixe holê ye. Van tiştên ku li vê pêkhatinê bandorê dike dikeve qada sosyolojiya çandî jî. Em wek weşanxaneya Hîvda perpesktîfa xwe ya weşanê li ser pêşxistina qelîteya «xwendevan» digirin ber çavan. Her çiqas dilnizm be jî dixwaze tevkariyek li vî hêlî bike. Wek weşangeriya kurdî jî em dixwazin tevlî vê hilberînê bibin. Nasandina jiyanê, pêwendî bi ezmûna xwe ya dîrokî re danîn, ji hêla polîtîk, dînî de bilindkirina qelîtê ji xwe re dike armanç. Nizanim me wek weşanxaneya Hîvda me karî vê yekê pêk bînin an na. Helbet ev jî textîra xwandevan e.» Siyabend da zanîn ku Hîvda dixwaze xwe bigihîne xwendevanê baş û wiha domkir, «Xwendevanê ku bi awayekî îdolojîk nêzîkî pêvajoya xwendinê nebe, bikarebi bêalî be, dikeve nav profîla xwendevanê me. Di vê hêlê de em wek weşanxaneya normalbûna pêvajoya kurda li ser wêşangeriyê disekinin. Em normalbûnê ji xwe re temel digrin û çi ji destê me were dixwazin tevlê bikin.»




### Pirtûkên bi nirx ji weşanên Hîvda'yê

Her çiqas Hîvda bi hejmarek kêm pirûk çap kiribe jî, bi pirtûkên cihê balê dikşîne ser xwe. Pirtûka nû ya ku ji weşanên Hîvda derketiye bîranînên Salah Bedreddîn ya bi navê 'Tekoşîna Tevgera Netewî ya Kurd li Sûrî' ye. Pirtûk ji bîranînên Salah Bedreddîn yê ji biçûktiya wî hetanî ketina nav siyasetê, ji hevdîtinên wî yên bi serokên partî û dewletan re hatanî tekoşîna wî ya çekî pêk tê. Pirtûka ku ji 18 beşan pêk tê ne tenê bîranîn in. Ligel bîranînan hin hevdîtinên ku li tu cihan nehatibû nivîsandin di pirtûka Bedreddîn de tê eşkere kirin. Nivîskar panaroma ya 50 salên dawî ya Rojavayê Kurdistanê radixe ber çavan. Bi taybetî bûyerên di dawî yê de ku li Rojava diqewimin pirtûkê zêdetir derdixe pêş. Pirtûk ji hêla Umîd Demîrhan ve li kurdî hatiye vergerandin.




Pirtûkek din ya Hîvda'yê jî 'Dîroka Tasavûfa Kurdistanê' ya Muhammed Rauf Tavakkolî ye. Tavakkolî yê ji Rojhilatê Kurdistanê di pirtûka xwe de behsa baweriyên kevnare û behsa baweriyên piştî ku kurda mislimantî qebûl kirine dike. Tavakkolî bawerî û terîqatên kurda yek bi yek digre dest, dîroka van tarîqatan radixe ber çavan. Rêberê ku di tarîqetan de bi bandor in û têkiliyên tarîqata bi hev re, bi gel re û bi desthilatiyan re bi zimanekî zalal vedibêje. Di beşên pêşî de li ser baweriyên kevnare yên kurda, weke êzdîtî, ehlî heqî disekine. Di bêşên din de jî li ser tarîqetên ku li Kurdistanê bi bandor in disekine. Wek; Qadîrî, Neqşîbendî... Tenê behsa dîrokê nayê kirin di heman demê de mînakên resen ji van baweriyan tê dayîn.

Pirtûka Remzî Pêşeng ya bi navê 'Nêrîna Çarem; Analîzkirina Binyada Netewperestiya Kurd' jî di serî de behsa dîroka kurda dike. Di beşên yekem de behsa şaristaniyên kevnare tê kirin û têkiliyên wan bi kurdan re tênê ravakirin. Di bêşek berfireh de jî behsa mîrektiya Bilîsê ya Şerfxana tê kirin. Pirtûk bi nîyeta rêvekirina sê nêrînên li dijî kurdan tê bikaranîn hatiye nivisandin. Ew nêrîn jî Osmanî, şîa û selefîtî ne û nivîskar di vê çarçoveyê de ji bo kurdan rêya çarem pêşniyar dike. Di dawiya pirtûkê de hin belgeyên resen yên di derbarê dîroka Kurdistanê jî de cih digrin.




# 'Ax'

# Dengê sirgûnê ya keserîn û Tara Mehmedova

Peyva herî zêde ku di jiyana kurdên Sovyetê de cih girtiye "jêbûyîna xaka xwe" ye. Jiyana wan bi tevayî çûyîn û hatina li ser xakên cihê cihê ye. Sirgûnî di jiyana wan de bûye awayeke jiyanê. Û kesên herî pir hesreta "axê" dikşînin kesên ji xaka xwe bûyîn ne.

Bi aliye xwe yê tijî hesret sirgûnî ji bo hunermanden hestên bê hempa diafirîne. Hunermendên sirgûniyê, li xeribiyê guh didin hesret û hestên xwe û rewşa wan ji bo wan dibe derfeta afirandinê.

Stranbêja ciwan Tara Mamedova jî yek ji wan kesan e ku jiyana wê li sirgûnê de derbas bûye ye û vê sirgûnê ji xwe re bi naskirina çandên cihê, tarzên serkeftî, kiriye derfet. Mamedova kêmasiya xakek bi hûnera xwe ji holê radike û mûzîka xwe ji xwe re dike welat. Ji kêmasiya xakê, Tara albûma xwe ya yekem bi navê "Ax" dixemilîne. Di albûma "Ax" de jan û keserên sirgûniyê, jê bûyîna ji xaka xwe bi çavê keçek biçûk tîne zar û ziman.


AZÎZ TEKÎN

**Ku mirov gotinên Ax'ê "Ax zarokatiya min çû, bi penabertî nav destê sar / Ax me kesî nedît, kes pê nehesî bi vî halê giran" dixwîne, mûzîka wê guhdar dike û li jiyana we dinêre jan û keserên sûrgûnê dibihîse û dibîne. Hûn dikarin hinek behsa rêwîtiya xwe û malbata xwe bikin?**

Wek tê xuyakirîn gotina rewîtî, penaberî, koçberî naveroka wan tije ye û xûyaye. Le bêle ya me, yanê yê kurdên Rûsyayê (Sovyeta kevn) ne tene bûn, herwiha êtim û bêkes bûn. Min di albûma xwe de behsa bêkesiyê kir, behsa zaroktiya xwe û birinên xwe kir. Bi çavê zarokek keç û dilekî biçûk. Ez di sala 1983'an de li Kirgizistanê, bajare Kokyangakê çêbûme. Malbata min wek piraniya kurden Kirgizistanê bi esle xwe ji Kurdistana Bakûr in. (Bazîd a Serhedê) Lê belê me eva ji kal û bavê xwe girt yan jî me yê nezanî buya em ji kuderê ne. Ji wir bo Qafkasyayê tên sirgûnkirin û ji wir jî çûne Asya ya Navin, Kirgisistanê. Di sala 1993'an de dîsa mejbûr bûn ware xwe bihêlîn û biçin Rûsya ya sar.

**Hûn pirî caran bi hersê zaravayên kurdî (kurmancî, soranî, zazakî) û bi zimanê din stranan dibêjin, ev pirrengî tiştek çawa ye? Ev dewlemandî derfetên çawa pêşkeşê we dike di mûzîkê da?**

Mirov çiqas zimanan bizanibe ewqas mirov e, mirov çiqas fireh be ewqas jî diafirîne. Hemû kes bi zimanê xwe çanda xwe heye û gava mirov çandên din jî nasdike çanda xwe baş bi cîhdike. Ji bona hemû zimanan, mûzîk mûzîk e, lê belê di serî de bi zimanê xwe ez ez im. Jî ber vê albûma min bi kurdî ye, û bi hersê zaravayên kurdî ne. Em bi şans in ku ziman û çandek me ya ewqas dewlemend heye, ez wan dewlemendiyên xwe dibînim. Ev ne rengîniyek e, em gerek zimanê xwe bizanibin an jî ezê nikaribim ji xwe re bêjim 'mûzîsyen.'

**We albûma xwe ya Ax wek "zaroka xwe ya yekem" bi nav kiriye. Hûn dikarin hinek din rawe bikin, çima "zarok"?**

Tu tişt qasî dilê dayikeke mezin nîn e. Gava zaroka wê çêdibe tu kes qasi wê kedê nade û wek em tev dizanîn heskirin ked e. Ez ne dayik im, bes ez bi albûma xwe bûm dayîk, Li derûdora min tu kes tinebû, ez bi tenê bûm. Her kes bi ser min ve dihat, min ji cehdek bê hempa da ku bibim xwedî albûma xwe Ax. Ku hestên jinan binîm jiyanê. Ev albûm bi başî û kemasiyên xwe ya min e û min bi keda xwe çekir. Ev keda min ya diya min e. Ax bû neynika min, le ev tenê beşek biçûk e. Ez hevîdarim ku albûmên din çêbibin, da ez bikaribim hestên xwe zînde bikim.

**Mûzîka kurdî ku ji bingehek ewqas xurt tê lê çima niha li dinyayê cihek zêde ber bi çav nagre?**

Di hemû beş û rengên mûzîkê de karên baş û ne baş hene. Ez hurmetê didim hemûyan. Lê karê baş qîmetê nabîne.

**Jiyana rojane di bin bandora mêran de ye. Hûn wek jinekê xwedî qelîteye, di jiyana xwe ya rojane de çi astengî û zehmetî derdikevin pêşberê we?**

Ji bona jinek afrêner hertim astengî hene. Hergav dieşê, birîndar dibe; bi taybetî di nav civaka me de. Min ji wek dayika xwe li hember fikrên mêrane gelek şer kir û ne tenê mêr her wiha jinên ku sîstema serdestiyê di mêjiyê xwe de dijî jî. Lê min di jiyana xwe de biryara jiyana xwe neda destê tu kesî û nadim jî. Ji ber ve sedemê, gelek zehmetiyen kişand. Gelek caran xwestin min biêşînin wek leşek sere min berjer bikin lê ez êsta serbilînd im bi başî û nebaşiyên xwe. Em jinên kurd ne jinen berê ne û ez hevîdar im ku em ê bi hestên jinên esîl bi awayek azad pir tiştan biguherînin. Ku em xwe biçûk nekin emê mezin bin. Di mûzîka kurdî de bi zimanê jinan gelek stranen evînî hatine gotin lê kem e û her ku çûye kêm bûye.

Divê bi ziman û qelama jinen kurd zêdetir tişt bê afirandin, ji ber hest û ramanên jinan kûr û dewlemend e.

**Hûn di albûma xwe de formên mûzîka ewrûpayî; jazz û blues û formên mûzîka kurdî bi kar tînin. Sentezek çawa derdikeve holê?**

Motîfên jazz blûs ku dewlemendiya ji gelen din fer bûm e. Her kes ji hev tiştan fêr dibe, ez jî her dixwazim fêr bibim. Lê belê bi taybetî bandora ramansa Rûsa jî li ser min hebû, ev jî bandorek ne xirab bû. Ez albûma xwe wek "etnîk pop" bi nav dikim. Gelek awayên popê hene; popek kûr, popek etnîk.

Pop a vala jî heye. Di çavê me de gava em dibêjin "pop" mîna ku bêqîmet e lê ne wiha ye. Her wiha 2 stranên min nasên min Ferhat Patiyev û Ferman Patiyev nivisadin, spasiyên bê dawî ji wan re bi rê dikim. Ew ligel min sekinîn. Her wiha Hasan Ağırdağ, Kerem Gerdenzerî, Hozan Dilovan re jî spas dikim.